

ÇAPA EWROPA

# RÛDAW

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA

*20 keçan formên pêşbirka Miss Kurdistan tejî kirine*

» 10




# Kurdek di nav rêzên al-Qaîde de

7 »

Hejmar / Nr. 208
1 Tebax / August 2013




| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

Rojavayê Kurdistanê daye dûv ezmûna Başûr

## Tirkiye razî bû?

» 4

## Xeyala jiyana li Hewlêrê li Frankfurtê şikest

» 6

# "Kurdên Mihelmî" bi hev ketin




**Köln (Rûdaw) -** Li bajarê Almanya Salzgitterê pevçûnekê di navbera Mihelmiyan de rû da û di encamê de gellek kes birîndar bûn. Di pevçûna roja çarşema hefteya borî pêk hat de, kesekî 52 salî bi giranî birîndar bû û niha jiyana wî di metirsiyê de ye. Hat ragihandin ku di dema pevçûnê de dermance jî hatine bikarnîn.

Ji ber lêpirsîna derbarê bûyerê de dewam dike, polîs û dozgeriyê heta niha derbarê sedemên pevçûnê de daxuyanî nedaye. Di vê navberê de serokê Daîreya Krîmînalî ya eyaleta Niedersachsenê, Uwe Kolmey, derbarê bûyerê de ji televizyona NDRê re axivî û got ku êdî gellek zehmet bûye ku dozê li "Kurdên Mihelmî" vekin û wiha dewam kir: "Ew yasayên Almanyayê napejirînin. Dadwer, dozger û şahidan bi tehdîtin dikin bin zextê de."

# Dozgeriya alman dosya rêkir Tirkiyeyê

**Koln (Rûdaw) -** Keça kurd Hatun Surucu beriya 8 salan ji ber doza "namûsê" ji hêla birayê xwe ve li Berlînê hatibû kuştin. Niha serdozgeriya Tirkiyeyê li du birayên wê yên ku li Tirkiyeyê dijîn doz vekir. Almanyayê jî ev gava nû ya Tirkiyeyê bi erênî pêşwazî kir û li ser vê yekê dosyaya bûyerê ji dozgerên tirk re rêkirin.

Malbata Hatun Surucu daxwaza wê ya jiyaneke xweser nepejirandibû û di dawiyê de ew bibû qurbanî. Piştî Hatun hatibû kuştin, birayê wê yê ciwan Ayhan li dadgehê diyar kiribû ku wî beyî arîkariya malbatê xuşka xwe kuştiye. Bi mikurhatinê re 9,5 sal cezayê girtîgehê lê hatin birrîn.

Digel ku di nava raya giştî de bertekên mezin hatibûn nîşandan, herdu birayên wê yên din serbest hatibûn berdan. Pişre jî herdu bira li Tirkiyeyê niştecih bibûn. Niha jî serdozgeriya Tirkiyeyê biryar da ku dozê li birayên Hatun Surucu, Mutlu û Alpaslan, yên ku li Tirkiyeyê dijîn veke. Li ser daxwaza Tirkiyeyê, dozgeriya almanî ya ku doz dişopand dosyayeke berfireh ya derbarê bûyerê de rêkir Tirkiyeyê.

Dêbavên Hatun Surucu ji Erziromê ne û di salên 1970an de hatibûn Almanyayê. Hatun jî li Berlînê hatibû dinyaê. Malbatê Hatun di dema şagirtbûna wê de dabûn mirovekî xwe yê li Stembolê dijiya. Piştî kurekî wê yê bi navê Can çêbû, ew ji mêrê xwe veqetiya û dixwest jiyana xwe digel kurê xwe berdewam bike. Lê belê malbat li dijî tenêmayîna wê ya li xaniyekî derdiket û dixwest ku ew wekî berê li gor şertên malbatê bijî.



# Bi şertê nivîsandina gotarê doz rawestiya




**Koln (Rûdaw) -** Di Nîsana sala derbasbûyî de ji bo balkişandina li ser rewşa rêberê PKKê Abdullah Ocalan, li bajarê Hamburgê yê Almanyayê keştiyek hatibû desteserkirin. Bi sedema "şelandina azadiyê û zordariyê" doz li çalakgerên kurd hatibû vekirin. Rûniştina yekemîn ya dozê pêncşema derbasbûyî li dadgeha Hamburgê pêk hat. Di rûniştina yekemîn de jineke ciwan ya kurd hat darizandin û li ser daxwaza dozger doza li hemberî wê hat rawestandin. Dadgehê jî diyar kir ku bi vê rêbaza çalakiyê dikarîbû felaketek pêk were û biryar da ku bersûca wê demê 20 salî gotarekê derbarê "sînorên azadiya derberîna siyasî û xwepêşandan" de binivîse. Bi vî şertî doza li dijî wê jî hat rawestandin. Doza li hemberî 8 kesên din ên beşdarî çalakiyê bibûn wê di rojên pêş de destpêbike.

Di dema çalakiya desteserkirina keştiyê de 79 rêwî hebûn. Polîs diyar kiribû ku çalakgeran xwestiye berê keştiyê bidin Tirkiyeyê lê wan destûr nedaye. Piştî wêneyên Ocalan hatibûn vekirin, bi agahdarkirina rêwiyan polîs hatibûn cihê bûyerê û çalakî bi dawî bibû. Di nava çalakiyê de 9 keç û xortên temenê wan di navbera 16 û 26 de hebûn.

## Op. Dr. Koco Elbistan çû ser dilovaniya xwe



Koco Elbistan di 04.07.2013 de çû ser dilovaniya xwe. Koço Elbistan di 1930î de li qezaya Hatayê li Hassa ji dayik bibû. Di dema xwendina xwe ya tipê de, di sala 1959ê de, ew jî ji ber doza 49an, ku tê de 49 kesayetiyên kurd hatibûn girtin, hat girtin û darizandin.

## Hejmara nû derket




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



# Baweriya Beşikçi bi aştiya Bakur nîne

**Hewlêr (Rûdaw) -** Rewşenbîrê navdar yê Tirkiyeyê û dostê Kurdan Îsmaîl Beşikçi diyar dike ku baweriya wî bi proserya aştiyê li Bakurê Kurdistanê nîne û dibêje "hêj serokwezîr behsa yek dewlet, yek gel û yek ziman dike."

Îsmaîl Beşikçi derbarê proseya aştiyê li Bakurê Kurdistanê de, di daxuyaniyeke taybet de ji Rûdawê re ragihand ku "ji salên bîstan ve Kurdistan parçeparçe bûye, mafê Kurdan e ku dewleta wan a serbixwe hebe."

Ji bo çareseriya vê kêşeyê, Beşikçi got: "Beriya her tiştî pêwîst e Kurd yekîtiya neteweyî pêk bînin. Êdî di çarçoveya Tirkiye, Îran, Iraq û Sûriyê de bîrê li doza xwe nekin, lê belê pêwîst e di çarçoveya Kurdistaneke serbixwe de bîrê li çareseriya kêşeya xwe bikin. Gelê Kurd gelekî 50 milyonî ye, wek hemû gelên cihanê pêwîst e dewleta wî hebe."

Baweriya Beşikçi bi pêşveçûna proseya aştiyê li Bakurê Kurdistanê nîne û dibêje ku "hêj leşker zêde dibin. Hêj keleh û baregehên leşkerî zêde dibin. Hêj serokwezîr behsa yek dewlet, yek gel û yek ziman dike. Ji ber vê yekê baweriya min pê nîne."

Beşikçi teqez li ser vê yekê dike ku kêşeya Kurdan ya nasnameyê heye û dibêje "Kêşeya herî mezin ya Kurdan kêşeya nasnameyê ye. Li Tirkiyeyê Kurd bi Tirk bi nav dibin. Li Îranê bi Faris. Li Iraq û Sûriyê ji bi Ereb."

## Cîgirê serokwezîr û berdevkê hikûmeta Tirkiyeyê, *Bülent Arinç:*

# Hêvî dikim *Barzanî* bibe serokê kongreyê



**Enqere (Rûdaw) -** Bülent Arinç ji Rûdawê re ragihand ku daxwaza wan ji serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî ew e ku kongreya netewî ji bo aştiyê be û bi siyaseteke sivîlane were sazkirin. Arinç herwiha got ew hêvî dike ku Barzanî ji pêgeha xwe bibe serokê kongreyê.

Derbarê çend pirsên navxweyî yên welatê wî de, ku ji bo Kurdistanê girîng in, Arinç ji Rûdawê re got: "Pêwendiyên me û Herêma Kurdistanê xurt in. Pêwendiyên me yên bazirganî ligel Îraqê bi giştî 20 milyar Dolar in, ji wan 11 milyar Dolar buhayê hinartinên welatê me ji bo Herêma Kurdistanê ne. Lê belê ev nayê wê wateyê ku pêwendiyên me û Herêma Kurdistanê tenê di warê aborî de ne, pêwendiyên me di warê ewlekarî û hevdengiyê de jî xurt in."

Arinç got: "Barzanî gavên guncaw ji bo dawîanîna şerê çekdarî û peydakirina aştiyê avêtine û em bi hêvî ne ku Barzanî di van gavan de berdewam be. Ez di wê baweriyê de me ku ev pêwendiyên me ji bo parastina ewlekariya navçeyê girîng in."

Derbarê pirsa hêsankirina hatin û çûna di navbera Tirkiyeyê û Herêma Kurdistanê de, bo mînak vekirina sînor û rakirina vîzeyê, Arinç got: "Herêma Kurdistanê ne dewleteke serbixwe ye, bi baweriya min divê hikûmeta navendî vê pirsê yekalî bike. Heta niha çend rêkeftin di navbera me û Herêma Kurdistanê de hatine îmzekirin, lê hikûmeta navendî pirsgirêkan dirust dike." Arinç herwiha got: "Pirsgirîkeke din heye ku divê were çareserkirin, ew jî pirsgirêka ewlekariyê ye."

Derbarê rewşa Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê, Bülent Arinç got ku PYDê di aloziya Sûriyê de Kurd birine aliyekî din û desthilatdariyê dike. Ev helwesta wan ne rast e û ti sûda Kurdan, Sûriyê, yan jî herêmê ji vê helwestê tine.

Derbarê wê îdiaya ku ew Kurd e, Arinç got: "Ez ne Kurd im, lê ez şanaziyê bi wê yekê dikim ku Kurd bim, û ku Kurd min yek ji xwe bizanin. Tirkên şovenî vê dengoyê belav dikin, ji ber ku ji roja ez tevlî siyasetê bûme, pêwendiyên min ligel Kurdan baş in û min gellek xebat ji bo zimanê kurdî kiriye."

Arinç behsa wê yekê kir ku dema bûye wezîr û serpereştyarê toreya radyo û televizyona Tirkiyeyê TRTê, wî di demek kurt de TRT-6 damezrand.

Li gor sistema navxweyî ya AKPê, mafê her kesî ye ku sê caran bibe parlementer. Di dema borî de Bulent Arinç sê caran bûye parlemanter û êdî nema dikare bibe parlementer. Lê endam û alîgirên partiya wî naxwazin ku ew ji karê siyasî dûr bikeve.

Arinç dibêje: "Eger ev dema min a niha bi serî bibe, ez dikarim bi rehetî werim Kurdistanê."

# Guhertinên dualî li Rojavayê Kurdistanê

**Qamişlo (Rûdaw) -** Li Rojavayê Kurdistanê û li bajarê Helebê şerê di navbera Yekîneyên Parastina Gel (YPG) û komên tundrew ên îslamî de didomin. Li herêma Girê Spî ev bi rojan e şer û pevçûn di navbera YPGê û komên bi navên Dewleta Îslamî ya Iraq û Bîlad El-Şam û Eniya el-Nusra de pêktên. Herwiha li bajarê Helebê jî şer di navbera YPGê û koma îslamî Ensar El-Islam de pêk tên. Ji hêla din ve, piştî ku di suîqesteke bombeyî de endamê Komîteya Dîplomasî ya Desteya Bilind a Kurd û endamê Dîwana Meclîsa Gel a Rojavayê Kurdistanê û TEV-DEMê Îsa Huso jiyana xwe ji dest da, metirsiya ku hêzên îslamî yên tundrew bi awayekî hişktir berê xwe bidin Rojavayê Kurdistanê afirî. Piştî serdana hevserokê PYDê Salih Muslim bo Tirkiyeyê jî îşaretên guherîna siyaseta Tirkiyeye ya derbarê Rojava de xuya dikin.

### Şer li derûdora Girê Spî dom dike

Şerê li bajarokê Girê Spî û derdora bajerok yê di navbere YPGê û hêzên Îslamiyên radîkal van rojan jî dewam dikir. Herwiha ji Girê Spî û hinek gundên ku ketine bin kontrola El-Nusra de, gellek malbatên kurd koçî bajarê Kobanê kirin. Li gor agahiyên peyamnêrê Rûdawê, li devera Girê Spî û gundên derdora wê şer di navbera herdu aliyan de didome. Navenda pevçûnan bi taybetî li derdor û di nav gundên Çelekê, Girhok, Hemara, Kendal, Mezlûma, Til Elo, Til Exder, Til Findir û Yûsifiyê ye. Herwiha gundê Bîr Kitikê kete bin kontrola YPGê. Li gorî agahiyan ji deverê, komên îslamî êrişî malên Kurdan dikin û malan dişewitînin.

### Pevçûnên li Şêxmeqsûdê dewam dikin

Şerê di navbera YPGê û hêzên îslamî yên tundrew de derbasî taxa Kurdan ya Helebê Şêx Meqsûd jî bû. Şerê li vir bi giranî li herêma El Sika di navbera YPGê û çekdarên Ensar El-Islam, ku berê li Başûrê Kurdistanê çalak bû, pêk tê. Derbarê kuştî û birîndaran de agahdariyên zelal bi dest neketin. Fermandariya YPGê jî daxuyand ku şervanekî wan jiyana xwe ji dest daye û gellek êrişker ji aliyên wan ve hatine kuştin.




### Siyasetmedarê kurd Îsa Heso hat kuştin

Li bajarê Qamişloyê endamê Komîteya Dîplomasiyê ya Desteya Bilind a Kurd (DBK) Îsa Huso di encama suîqesteke bombeyî de jiyana xwe ji dest da. Li gor zanyariyên ketine destê Rûdawê, dema Îsa Huso bi otomobîla xwe ji Taxa Kornîş derket ku biçe ser karê xwe, teqîn pêk hat. Tê gotin ku di bin otomobîla Huso de bombe hatibû bicihkirin û dema lê siwar bû, bombe hatiye teqandin.

### Çav li rê ye ku Muslim dîsa biçe Tirkiyeyê

Piştî serdena hevserokê PYDê Salih Muslim a hefteya borî bo Tirkiyeyê, hinek îşaretên guhertinê di siyaseta Tirkiyeyê ya derbarê Rojava de rûdan. Muslim piştî hevdîtinên xwe yên bi rayedarên tirk re diyar kiribû ku di aliyê hevfêmkirinê de serdana wî erênî derbas bûye. Herwiha hevserokê PYDê diyar kir ku dibe ku ew heftiya pêş careke din biçe Tirkiyeyê û hevdîtinan bi rayedarên dewletê re pêk bîne.

### Bulent Arinç bi nermî behsa Rojava kir

Cîgirê serokwezîrê Tirkiyeyê û berdevkê hikûmeta AKPê Bulent Arinç jî derbarê pêşveçûnên li Rojavayê Kurdistanê de di bernameyeke televizyona dewletê TRTê de axivî. Arinç diyar kir ku ew dibînin ku li Sûriyê Kurd dixwazin valahiya desthilatê binirxînin û rêveberiyekê damezrînin û wiha pêdeçû: “Li van deverên ku Kurd lê binecih in, dibe ku nîqaşek wan a damezrandina dewletek kurdî hebe û navê wê dewletê jî Kurdistan e. Kurdistan wekî navekî cografîk tê bikaranîn. Digel ku ev bêxî dilê me ye jî lê emê nikaribin destkariyê di geşedanên li hinek deveran bikin. Tenê em dikarin li hember arîşeyên navxweyî têkoşînê bidin.“

### Birîndarên kurd li Qoserê tên dermankirin

Ji hêla din ve heta niha gellek caran birîndarên êrişkerên tundrew ên îslamî li nexweşxaneyên dewletê yên mîna Serê Kaniya Bakurê Kurdistanê dihatin tedawîkirin. Lê belê piştî serdana Salih Muslim a Tirkiyeyê yekem car 2 Kurdên ku li Qamişlo û Serê Kaniyê bi giranî birîndar bibûn, derbasî nexweşxaneya dewletê ya Qoserê li Bakurê Kurdistanê kirin.

Welatiyên kurd yên bi navên Beşar Yaqub û Hisên Elî Evdile bi ambûlansa Şaredariya Serê Kaniya Bakurê Kurdistanê ji bo nexweşxaneya Qoserê hatin veguhastin. Herwiha şaredarê Qoserê Ferhan Turk li nexweşxaneyê serdana birîndaran kir.

---

**Hêmin Xoşnaw** *Hewlêr*

## Li gor partiyên Rojavayê Kurdistanê

# Vexwenina Salih Muslim bo Stembolê nîşana hêza YPGê ye

Tevî rexneyên wan jî, nûnerên partiyên Rojavayê Kurdistanê yên li Hewlêrê serdana serokê PYDê bo Tirkiyeyê bi erênî dibînin. Roja 26ê meha borî nûçeya firîna hevserokê PYDê Salih Muslim ji firokxaneya navdewletî ya Hewlêrê ber bi Tirkiyeyê ve bû manşêta pirraniya rojname û dezgehên ragihandinê yên Tirkiye û Herêma Kurdistanê. Berê jî gotegota rûniştina PYDê û dezgeha MITa Tirkiyeyê belav bibu. Ev civîn piştî derbasbûna çend rojan bi ser bidestxistina bajarokê Serê Kaniyê û çend navçeyên din ji aliyê YPGê ve pêkhat. Lewma çavdêrên siyasî dibînin ku dawetkirina Salih Muslim bo Tirkiyeyê pêwendiya wê ya yekser bi pevçûna YPGê û çekdarên Cebhet el Nusra ve heye.

Li gor dîtina nûnerê Silêmaniyê yê Partiya Çep a Demokrat a Kurdî, Şelal Gedo, civîna Muslim û Tirkiyeyê serketina dîplomasî ya YPGê bû. Di vî warî de ji Rûdawê re got "Serokên kurd heta demeke nêzîk didîtin ku çekên YPGê ji bo Kurdên Sûriyê bele ne û Kurd nikarin pêwendiyê bi cîhana derve re bikin, lê vê bûyerê berevajiya vê yekê teqez kir."

Li gor daxuyaniyên ku Salih Muslim piştî civîna Stembolê dan ajansa nûçeyan ya Dicleyê, berpirsên tirk soza vekirina çend dergehên sînorî bi Rojavayê Kurdistanê re dane. Şelal Gedo vê bi şerê van çend rojên dawiyê di navbera YPGê û bereya Nusre ve girêdide û dibêje "Eger YPG nebûya, nedibû ku Tirk bangî Kurdan bikin û bêjin em ji we re dergehan vedikin. Ji ber ku îro ji pêvî YPGê hêzeke din di meydanê de nîne."

Nûnerê Tevgera Çaksaziyê ya Kurdî li Sûriyê, Cedan Elî, çûna hevserokê PYDê bo Tirkiyeyê bi erênî dide nasîn û dibêje ku ew "berhema xwesepandin û bihêzbûna YPGê ye." Ev yek ji hokaran e, lê Cedan çend hokarên din jî dibîne, ku Tirkiye mecbûrî vexwendina Salih Muslim kir: "Opozisyona Sûriyê ji hêz dikeve. Di bereyên şer de berbestan ji dest dide. Rejîm cihê lingê xwe li hin deveran digire."

Cedan nîşan bi wan mebestan da ku Tirkiye dixwaze ji rûniştina bi Muslim re bidest bixîne: "Herêmên kurdî, ku dikevin ser sînorên Tirkiyeyê, di destên YPGê de ne. Lewma baştirîn bijarde ji bo Tirkiyeyê rûniştina bi PYDê re ye. Bêguman beriya salekê ev nêrîn nebû. Weke siyaset û dewlet berjewendiya Tirkiyeyê ji rûniştina bi PYDê re heye. Bi kêmanî ji bo Tirkiyeyê dostaniya PYDê ji dijminayiya wê baştir e. Ji ber ku nikare bandora wê li ser zemînê tine bike."

Di demên borî de PYDê rexne li partiyên kurdî yên Sûriyê dikir û hinek jî wek kirêgirtiyên Tirkiyeyê dida nasîn, ji ber ku ew beşdarî civînên opozisyona Sûriyê li Tirkiyeyê dibûn. Lê piştî serdana Muslim bo Tirkiyeyê ev berevajî dibe. Vê carê partiyên kurdî rexneyê li PYDê dikin ku bi tenê ligel Tirkiyeyê dicive.



Nûnerê Hewlêrê yê Partiya Yekîtî ya Demokrat a Kurd, Memûd Mihemed, dibêje ku Kurdan li Rojava berdewam pêwîst didîtin ku divê pêwendî bi welatên derdora Rojavayê Kurdistanê re bên girêdan û gumanên wan rakin. Lê rexneyê li vê serdana serokê PYDê dike û dibêje "eger yek ji me carekê bi firokeyê di ser Tirkiyeyê re çûba Ewropayê, biraderên PYDê digotin ev bûne Erdoganî. Wiha baş e ku weke Desteya Bilin em bihevre, ligel opozisyona Sûriyê be yan ligel welatên derdorê be, em diyalogê bikin. Wezareta derve ya Tirkiyeyê dozdariya me kir ku em serdana Tirkiyeyê bikin, lê me red kir. Me got divê hûn bi navê Desteya Bilind a Kurdî dozdariya me bikin."




"Piştî serketina leşkerî, navçe dikeve bin destê Desteya Bilind a Kurdî û ala desteyê lê tê hildan."

## Fermandarê giştî yê YPGê, Sîpan Hemo:

# Cihadiyekî ku me kuştî amerîkî bû

Fermandarê giştî yê Yekîneyên Parastina Gel (YPG) Sîpan Hemo di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de red dike ku ew baskê leşkerî yê ti partiyekê bin. Ew herwiha red dike ku ew ser bi PYDê ve bin û dibêje beriya şoreşa Sûriyê di sala 2009ê de ew ligel partiyan civiyane û behsa dirustkirina vê hêzê kirine. Lê tenê PYDê amadebûna xwe nîşan daye ku hevkariya wan bike.

- Kurd Sûriyê ji belavbûna tundxwazên îslamî diparêzin
- Hinek Erebên gundnişîn piştgiriya me dikin
- Sala 2009ê em ji bo damezrandina YPGê ligel hemû partiyan axivîn

**Rûdaw: Hinek pevçûnên we ligel grûpa Cebhet el Nusra li derveyî navçeyên kurdî ne. Gelo xelkên wan navçeyan piştgiriya we dikin?**

**Sîpan Hemo:** Hinek Erebên gundnişîn piştgiriya YPGê dikin. Ji ber ku YPG li ser daxwaza wan çû wan deveran. Êlên Çelaxa û Cibûrî û pirraniya navçeyê piştgiriya me dikin. Di pevçûnên me yên vê dawiyê de me li dijî gellek çekdarên biyanî şer kir ku bi rêya Tirkiyeyê hatine nav axa Sûriyê. Wek mînak ewên ku li Serê Kaniyê hatine kuştin hevwelatiyên welatên wek Misr, Erebistana Siûdî û Tûnisê bûn. Yek ji Cihadiyan jî amerîkî bû, herwiha pirraniya çekdarên li Til Koçer kuştî jî pasportên iraqî û yên welatên din bi wan re hebûn.

**Bi baweriya hinek pisporan, hebûna Kurdên sêkûlar li deverê sûdê digihîne Amerîka û welatên rojava li dijî grûpên çekdar.**

Em Kurd demokrat, pêşverû û sîngfireh in li deverê. Li Herêma Kurdistanê binêre! Ew mînaka herî baş e ji bo teqezkirina gotina min. Heta niha ti neteweyên ereb negihiştine wê pêşketina wan. Tew Kurd dikarin ji wiha baştir jî bin. Lewma di berjewendiya Amerîka û welatên rojava de ye ku li Kurdên Rojavayê Kurdistanê û şiyanên wan mikur bên.

**Pêwist e rojava bi çi awayî nêzîkî Kurdan bibe?**

Jixwe welatên rojava Kurdistan çar parçe kir. Mixabin welatên rojava niha jî vî karî dikin û berdewam in li ser piştguhxistina têkoşîna Kurdan. Pêwist e bi Kurdan re gotûbêjan bikin û kêşeyên girêdayî deverên kurdî piştguh nexin. Ji ber ku eger Kurd statuyekê li Rojhilata Navîn bi dest bînin, bêguman Amerîka û welatên rojava sûdmend dibin.

**Krîza Sûriyê gihiştiye deriyekî girtî. Bi dîtina we, krîz çawa dikare çareser bibe?**

Şoreşa Sûriyê gihiştiye rewşeke xetimî. Bi gotineke din, Îslamiyên tundxwaz wek pêşeng tên dîtin. Ev jî gefê li ser Amerîka û rojava dirust dike. Aloziyên di navbera Elewî û Suniyan de gihiştine xalekê ku jê veger tine. Çareseriya wan kêşeyan jî naskirina Kurdan û dayîna mafên wan e. Ji xeynî Kurdan, çareseriya kêşeya kurd ne li ba ti kesî ye. Eger Amerîka û rojava hesabê Kurdan nekin, wê Îslamiyên tundxwaz desthilatê zeft bikin û bi vî rengî wê Sûrî parçe parçe bibe.

**Çawa Tirkiye rê dide Îslamiyên tundrew ku bêne nav Sûriyê, di demekê de ku Enqare bi Kurdên Bakur re di proseya aştiyê de ye?**

Bi rastî rewşeke pirr seyr e. Tevî ku Tirkiye bi Kurdên xwe re di nava proseya aştiyê de ye, lê ji rewşa Kurdên Sûriyê dilteng e. Ev herdu tevger berevajî hev in. Me di demeke kêm de gellek qezenc bidest xistin. Heta niha Kurdan li hersê parçeyên din bi vê lezê qezenc wiha bidest nexistine.

Em Kurd ji destpêkê de bêalî mane û neçûne ser bi ti alî ve. Em dizanin ku ji bo seranserê Sûriyê em nikarin tiştekî bikin. Lê herdem me teqez kiriye ku em dikarin navçeyên kurdî biparêzin. Lê Tirkiye ji helwêsta me nerehet bû. Ewa ku Tirkiye dilteng kiriye ew e ku Kurd fermanrewayiya navçeyên xwe dikin. Berpirsên tirk vê dawiyê ragihandin ku desttêwerdanê dikin.

**Gelo hûn li ser Tirkiyeyê gef in?**

Berevajî van tiştên ku berê derbarê me de hatine gotin, em xwe wek hevalên welatiyên tirk dibînin. Em alîgirê wan kesan in, ewên ku dikarin demokrasiyê di navçeyê de ber bi pêş ve bibin. Eger ev navçe têkeve bin destê Îsalmiyên tundrew, ev dibe karesat ji bo Rojhilata Navîn û cihanê jî. Qezencên me sûdê digihînin welatiyên tirk û navçeyê.

**Hildana ala YPGê li ser dergehê sînor yê Serê Kaniyê hinek berpirsên tirk dilteng kir. Çima hûn xwe ji van reftaran dûr naxînin?**

Ne pêwîst e wek kêşeyekê li vê bê nêrîn. Li hemû navçeyên ku dikevin bin kontrola me de, em ala YPGê hildidin. Lê pêwîst e vê yekê jî bêjim ku navçeyên kurdî di bin destê Desteya Bilind a Kurdî (DBK) de ne. Ew navçeyê birêve dibe. Piştî serketina leşkerî, navçe dikeve bin destê Desteya Bilind a Kurdî û ala desteyê lê tê hildan.

**Partiyên kurdî dibêjin ku YPG tenê beskekî leşkerî yê PYDê ye.**

Mixabin ev babet pirr caran hatiye gurkirin. Dema me biryar da ku em YPGê damezirînin, me serdana hemû partiyan kir, ne tenê PYDê. Herwiha me serdana serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî kir. Me li deriyê gellek partî, xelk û berpirsan da. Me ji hemû partiyan re ragihand ku em bi niyaz in ku hêzeke leşkerî li Rojavayê Kurdistanê damezrînin. Dibe bi bîra te bê ku çend êriş li ser Kurdan hatine kirin. Wek mînak êrişa sala 2004ê ya li Qamişloyê. Herwiha êrişa sala 2007ê ya Reqayê. Ji bo rêgirtinê li ber van êrişan, me pêwîst dît ku em hêzeke xwe ya leşkerî damezrînin. Lê hemû partiyên ku em bi wan re axivîn bîrokeya hêza leşkerî red kirin. gotin damezrandina hêzeke bi vî celebî giran dibe. Bi bawerî PYDê di hewldanên me de arîkariya me kir. Di nav yekîniyên YPGê de endamên partiyên kurdî yên din li kêleka endamên PYDê hene, wek Partiya Pêşverû ya Demokrat, Partiya Yekîtî ya Demokrat a Kurdî, Partiya Çep a Kurdî, Partiya Demokrat a Kurdî ya Sûrî, Aşûrî û hinek partiyên din.

Dixwazim careke din dubare bikim ku em ne baskê leşkerî yê ti partiyê ne. Em di bin fermandariya Desteya Bilind a Kurdî de ne. Em xebatê ji bo parastina navçeyên kurdî dikin. Heta ku kêşeya asayişî li Rojavayê Kurdistanê hebe, YPG dimîne. Bi rastî ev yekem car e ku bi awayekî fermî ji bo nêrîna giştî radigihînim: Sala 2009ê me hemû partî dîtin, dibe ku ji bo berjewendiyên partiyên xwe wan ev tişt behs nekiribin.

*Hevpeyvîn:* ***Mutlu Keviroglu***



Serokê Enstîtuya Kurdî ya Parîsê, Kendal Nezan:

# Sedsala 21mîn dibe sedsala azadiyê

**Paris (Rûdaw) -** Enstîtuya Kurdî ya Parîsê piştgiriyê dide xebata zimanê kurdî li Tirkiye û Bakurê Kurdistanê. Serokê Enstîtuyê Kendal Nezan li ser mijarê ev agahî dan: "Li Tirkiyeyê xebata li ser zimanê kurdî dibe, ev karekî baş e. Kesên vê xebatê dikin Îslamî bin jî, dîsa karekî baş e. Gava me Cihaniya Kurdolojiyê çêkir, ji Zanîngeha Mêrdînê jî beşdar hebûn. Me pirtûkên xwe dan wan. Ji bo Zanîngeha Colemêrgê tevkariya me bû, li bo ya Mûşê jî. Me li Mêrdîn, Beyazid û Wanê civînên xwe yên kurmanciyê çêkirin. Eger ziman pêş ve here, wê rojek were ku ew gel qedera xwe bi dest bixe. Ji ber ku ziman siyasetê diguherîne."

Kendal Nezan herwiha got: "Wê rojê min makaleyek xwend, ji raporeke 1880an. Serjimêra Kurdan 1, ya Ermeniyan 2.5, ya Yewnanî û Ruman dora 2 milyonan û ya Tirkan 10-12 milyon didan nîşandan. Çima hejmara Kurdan wisa kêm didan, min fêm nekir. Bila nîv milyon jî li Îranê, ango derveyî tixûbên Osmaniyan hebin. 120 sal di ser de borîn. Vêga em 40 milyon in. Bila 10-15 milyon asîmîle bûbin jî. Lê yên din yên navborî, li ser vê erdnîgariyê neman. Eger em çand û zimanê xwe vejînin, emê bigihijin armancên xwe. Televizyonan û bazirganiyê beşên Kurdistanê nêzî hev kirine û dikin. Ji bo Kurdan sedsala 21mîn dibe bibe sedsala azadiyê."

# Xeyala jiyana li Hewlêrê li Frankfurtê şikest





Wênê: Rûdaw

Wêneyê çepê: Soza xaniyekî wiha ji Ronî û hevjîna wî Evîn (wêneyê jorê li Frankfurtê) re hat dan

**Zekî Ozmen**

Ronî Keleş ligel hevjîna xwe Evîn Jiyan Ehmed, ya ku xelka Hewlêrê ye, li bajarê Almanya Frankfurtê dijî. Ji bo ew û zaroka wan bikaribin rojekê li Kurdistanê jiyana xwe berdewam bikin, wan beriya 2 salan li Şarê Zêrîn li Hewlêrê xaniyek kirrîn. Lê digel ku pereyê xaniyê xwe pêşin jî dane, wan hê jî mifteyê xaniyê xwe ji şirketê wernegirtine.

Hê jî ji Kurdistanê gellek kes dikevin nava hewldana xwegihandin û niştecihbûna li Ewropayê. Berovajî vê yekê jî, di xeyala gellek Kurdên li Ewropayê dijîn de jî vegera rojekê ya Kurdistanê heye. Lê xeyalên Ronî Keleş û Evîn Jiyan Ehmed yên di vî warî de zû şikestine.

Roja 26ê Adara 2011ê rojek taybet bû ji bo Ronî Keleş û hevjîna wî Evîn Jiyan Ehmed. Wan wê rojê ji projeya bi navê Şarê Zêrîn ya li Hewlêrê, ku girêdayî şirketa Swedish Star e, xaniyek kirrîn. Li gor herdu hevjînan wê demê birêveberên şirketê ji wan re gotin ku xanî wê di nava 5 mehan de radestî wan were kirin. Ji hêla din ve, di girebesta ku li ber dest e, dema radestkirinê xênî wekî 16 meh hatiye diyarkirin. Lê du sal di ser wê rojê re derbas bûne û ew hê jî nizanin wê kengî xanî radestî wan were kirin.

## Nikarin xwe bigihînin şirketê

Ronî Keleş dibêje ku ew ji Sêrtê ye û hevjîna wî jî ji Başûr e û ji ber derfeta wan heye, wan dixwest li herdu parçeyên Kurdistanê xaniyekî bikirrin: "Ez hercar ji xizmên xwe re dibêjim, dema ez mirim, bila ez li Kurdistanê werim veşartin. Piştî ez teqewît bibim, dixwazim digel malbata xwe li Kurdistanê bijîm. Ji wê yekê min li welêt xanî kirrî. Bi taybetî me xwest ji bo keça xwe ya temenbiçûk wî xanî bikirrin."

Keleş, ku ji temenê xwe yê ciwaniyê ve wekî wergêr li Almanyayê kar dike, dibêje ku ew naxwaze li welatê wî jî wekî welatên din mafên mirovan werin xwarin û wiha berdewam dike: "Ev welat bi xwîna şehîdan hatiye rizgarkirin. Naxwazim îmaja welêt bi kiryarên 2-3 kesan xerab bibe. Ji bo min xanî ne giring e."

Evîn Jiyan Ehmed jî diyar dike ku ji ber Hewlêr bajarê wê ye, wê bi taybetî xwestiye ku li Hewlêrê xanî bikirre û di siberojê de li wê derê bijî. Lê ji ber van pirsgirêkên rûdane ew tirsiyaye: "Ez li wê derê najîm û ji wê çendê dayika min diçe şirketê. Li wir hejmareke telefonê ji bo pêwendîdanînê didin dayika min û dibêjin wê piştî du heftiyên din telefonî wê hejmarê bikin. Em piştî du heftiyan telefonî hejmarê dikin lê telofona wan hercar girtî ye."

## Ji ber hevjînê xwe xemgîn e

Hevjîna Ronî Keleş, Evîn Jiyan Ehmed diyar dike ku wan bihîstiye xwediyê projeyê îflas kiriye û ji wê yekê rêza paş ya xaniyan neqediyan. Lê belê di vê bareyê de jî muxatabekî peyda nakin ku rastiyê ji wan re bêje. Evîn herwiha di aliyê hestan de jî şikestiye û wiha diaxive: "Ji bo min du caran nexweş e. Hem ji ber meseleya xênî û hem jî ji hevjînê xwe hatim şermê. Ew ji Bakurê Kurdistanê ye û me xanî li bajarê min li Hewlêrê kirrî. Ez gellekî tirsiyam. Bi hêvî bûm ku rojekê li Kurdistanê bijîm lê piştî vê meseleyê tirsiyam."

Herdu hevjîn didin diyarkirin ku ya giring ji bo wan ew e ku rastî were gotin. Ew dibêjin bila demek diyar ji wan re were gotin, ewê êdî xeman nexwin.

## Rûdawê xwe gihand Swedish Starê

Rûdawê ji bo derbarê babetê de xwe agahdariyên berfireh bistîne, xwe bi rêya telefonê gihand birêveberê şirketa Swedish Star a xwediyê projeya Şarê Zêrîn. Bi navê şirketê Necmedîn Heme Seîd li ser pirsa me diyar kir ku di girebestê de dema radestkirinê wekî 20 meh hatine destnîşankirin. Derbarê derbasbûna vî wextî de jî, birêveberê şirketê wiha axivî: "Mebest bi 20 mehan rojên kar in. Rojê betlaneyê û rojên din, ên wekî mînak baran bibare û mirov nikare kar bike, li ser van rojan nayên hesabkirin." Di berdewamiya axaftina xwe de Seîd got ku xwediyên xênî kengî bixwazin dikarin werin li xaniyên xwe temaşe bikin û ewê ji wan re dema radestkirina xanî diyar bikin. Piştî hevpeyvîna bi Necmedîn Heme Seîd re, bi armanca bersivdayina hinek pirsên nû, Rûdawê gellek caran hewl da ku dîsa xwe bigihîne Necmedîn Heme Seîd û birêveberên din yên şirketê. Lê keseke jin bi nîşandana gellek sedeman, wek telefon nakişîne, birêvebir ne li vir e, di demeke din bigerin, berpirs niha derketin û hwd. êdî pêwendiya Rûdawê bi berpirsên şirketa Swedish Star re dirust nekir.

# Serpêhatiya du birayên *kurd* yên di nava *al-Qaîda* de



Emrah Erdogan



Bunyemîn Erdogan di êrişeke hewayî ya firokeyeke bêmirov ya amerîkî de hatibû kuştin.

**Zeki Ozmen**

Şeva 4ê Cotmeha 2010ê li gundê Mîr Alî yê li herêma Wezîrîstan ya Pakîstanê, li ser sinorê Afganistanê, gellek kes li mala Kurdekî rûniştibûn. Xwediyê malê Emrah Erdogan yê Kurd bû ku ji Almanyayê çûbû wê derê, ji bo ligel malbata xwe "jiyaneke li gor şertên Îslamê" bijî, weke ku ew dibêje. Li wê malê hevjîn û kurê wî jî dijiyan. Wê şevê mêvanên din jî li malê hebûn. Ji bilî kesên ku Amerîka navên wan kiribûn "lîsteya terorîstên ku li wan digerê", birayê wî yê biçûktir Bunyamîn Erdogan yê wê demê 20 salî jî hebû. Bunyamîn Erdogan ew çend hefte bûn ku ji bajarê Wuppertal yê Almanyayê dabû dû şopa birayê mezin û berê xwe dabû Pakîstanê. Malbata Erdogan bi eslê xwe ji Kanîreşa ser bi Çewlikê li Bakurê Kurdistanê ye.

Herêma ku Kurdê ji Almanyayê ji bo jiyanê ji xwe hilbijartî, ne cihekî ji rêzê yê Pakîstanê bû. Dewlet li wir ne desthilatdar e. Rêxistina al-Qaîda û Talîban li wir bihêz in û şerîet serdest e. Amerîkî jî li wir tenê dikarin bi firokeyên bêmirov êrişan bikin. Wê şevê li wir 8 zilam kom bibûn û xwarin li mala Emrah Erdogan, ango Kurdê bi pênavê "Selehedîn el-Kurdî", dixwarin. Dema Bunyamin destpêkir sifreya xwarinê bide hev, Emrah jî ji odeya ku mêvanên wî lê rûniştibûn derket hewşê. Emrah gihişt hewşa malê û di heman demê de teqînek bi hêz di malê de pêk hat. Firokeyeke bêmirov ya amerîkî eriş kiribû. Xanî hatibû herifandin. Ji êrişê tenê xwediyê xênî Emrah Erdogan filitî. Di nav kuştiyan de birayê xwediyê malê Bunyamîn û Şahab Deştî yê îranî, ku ji Hamburgê çûbû Pakîstanê, jî hebûn.

## Ew jî li Tanzaniyayê hate girtin

Emrah Erdogan jî di sala 2012ê de li Derûselama paytexta Tanzaniyayê hatibû girtin û radestî Almanyayê hatibû kirin. Ew niha ji hêla dadgeha eyaletê ya Frankfurtê ve tê dadgehkirin. Dozger di wê baweriyê de ye ku ew terorîst e û endamê al-Qaîde ye. Wî di payîza 2010ê de ji çiyayên Pakîstanê dewleta Almanyayê tehdît kiribû û hêzên ewlekariyê yên Almanyayê kiribûn nava alarmê.

Lê Emrah di rûniştina dadgehê de îdia kir ku bi armanca ku ew bi perwerdeya malbatî ya îslamî bijî ew çûye Pakîstanê. Herwiha derbarê birayê xwe de jî wî got ku ew di nava hewildana parastina birayê xwe ji pêkanîna çalakiyeke xwekujî de bû. Wî ji dadweran re got ku birayê wî bi çavekî din li dinyayê dinêrî û di bin bandora kesên ku dixwestin çalakiyeke xwekujî bi wî bidin kirin de mabû. Ji ber vê çendê wî hewl daye xwe ku bandorê li birayê xwe bike, ji bo ew ji helwesteke bi vî rengî dûr bikeve.

## Dengê wî yê tomarkirî tiştekî din dibêje

Daîreya Krîmînalî ya Almanyayê (BKA) ku telefonên Emrah ên ji Pakîstanê didan Almanyayê guhdarî dikir, destnîşan dike ku wî bi xwe piştgiriya armanca xwekujî ya Bunyamîn dikir. Di 7ê Îlona 2010ê de Emrah telefon dabû birayê xwe Yusuf yê li bajarê Wuppertalê. Di axaftina tomarkirî de, ew dibêje birayê xwe bila keça ji Bunyamîn re xwestine rênekin û wiha dewam dike: "Ezê ji te re tiştekî bêjim, ji ti kesî re nebêje, ji Bunyamîn re jî, temam?" Ew dûre dibêje ku Bunyamîn ji bo operasyonekê hatiye hilbijartin û ewê biçe bihuştê. Herwiha bi heman şêweyî dixwaze ku birayê wî ji dayika wan re jî tiştekî nebêje. Ji ber van diyalogan, BKA wê demê jî di wê baweriyê de bû ku wî piştgiriya Bunyamîn ya ji bo çalakiyeke xwekujî kiriye. Dadgehkirina Emrah Erdogan ya bi tewambariya endambûna di rêxistineke terorîstî de û pê re girêdayî jî tewanbariyên din berdewam dike.

## Wê doz li hemberî Amerîkayê neyê vekirin

Derbarê kuştina Bunyamîn Erdogan yê ji hêla firokeyeke bêmirov ya amerîkî de jî, serdozgeriya Almanyayê ya li bajarê Karlsruhe vê mehê lêkolîna xwe rawestand. Di encamnameya lêkolînê de wiha tê gotin: "Doz wê ji ber êrişa di 4ê Cotmeha 2010ê ya li Mîr Alî li Pakîstanê neyê vekirin."

Herwiha di heman encamnameyê de tê gotin ku wan lêkolîneke berfireh kirine û gihiştine wê encamê ku êrişa li dijî hemwelatiyê alman Bunyamîn Erdogan li gorî Hiqûqa Navnetewî nakeve çarçoveya parastina sivîlan û êriş li dijî komeke çekdar ya birêxistinkirî hatiye pêkanîn û êrişên bi vî rengî di dema şer de di çarçoveya qanûna şer a navnetewî de ne.

# SPASNAME

Xalên Emîn Gedro (Îzedîn û Ehmed Nasso), birayê wî Ferzend Gedro, lawê wî Hawar Gedro û xizmên wî li Almanyayê spasiya hemû nûnerên partî û rêxistinên Kurdistanî û herwiha hemû kesayetiyên kurdî dikin, ên ku roja şemiyê, 27.07.2013, li Navenda Kurdî li Berlînê, çi bi amadebûn û çi bi rêya telefonê, di şîna rehmetîyê Emîn Gedro de, endamê "Komîta Navendî ya Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (Al-Partî)", beşdar bûn.

Emîn Gedro yê 63 salî roja 20.07.2013ê li bajarê Îslahiyê / Bakurê Kurdistanê bi sedama dilrawestanê çû dilovaniya Xwedê. Ew bi beşdarbûna komeke cemawerî ya mezin li gundê Bênê, herêma Robariya, ser bi bajarê Efrînê li Çiyayê Kurmênc, ji aliyê xizm, heval û hogirên wî ve hat veşartin.




Emîn Gedro endazyarê kiştûkal bû û pirraniya xizmeta xwe li bajarê Reqê (Sûriyê) qedand. Ew berpirsiyarê beşê xwedî û tîmarkirina rezan û masiyan bû. Dora 300 kes li cem wî dixebitîn. Ji ber ku ew ne "Baasî" bû, wî zaf cefa di dema karê xwe de dîtibû.

Emîn Gedro mirovekî rastgo û siyasetmedarekî niştimanperwer bû. Ew hêj gênc bû, dema ku ew dawiya salên şêstî yên sedsala borî kete nav rêzên "Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê" û têkoşîna xwe bêyî westan heya bi mirina wî berdewam kir.

Emîn Gedro endamê "Komîta Navendî ya Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (Al-Partî)" bû û vê dema dawiyê li Îslahiyê / Bakurê Kurdistanê rûdinişt. Ew bi roleke pir çalak ji bo peydekirina arîkariyên mirovane ji bo herêma Efrînê re di demên dijwar de rabû û pêwendiyên wî yên yekser bi "serokatiya Artêşa Sûrî ya Azad" û "Îtîlafa Niştimanî ya Sûrî" re li Tirkiyeyê hebûn, ji bo rakirina embargoya li ser herêmên kurdî û derbaskirina arîkariyên xwerdemenî û tenduristî ji xelkê me re.

Emîn Gedro beriya mirina wî bi çend rojan li civîna "Komîta Navendî ya Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê (Al-Partî)" li bajarê Hewlêrê amade bû û di nav "şanda Al-Partî" de bi serok Mesûd Barzanî re civiya, ji bo gotûbêjkirina arîşeyên Rojavaya Kurdistanê û ayindeya wê.

Emîn Gedro diya Hawar, çar zaroyên xwe (Hawar, Jiwan, Hêvîn û Narîn) û du neviyên xwe li şûn xwe hiştin.

***Îzedîn Nasso***
*Berlîn, di 28.07.2013 de*

# Daye dûv şopa bavê xwe







Ji 15 saliya xwe ve Mîro Tanriverdî yê niha 21 salî bi bazdanê û maratonê mijûl e. Weke ku ew dibêje ev hezkirina wî ji bo maratonê hi handan û çavlêkirina bavê wî destpêkir. Herçiqasî destpêkê di warê sporê de xeyalên wî ne maraton bûn.

Mîro kurê siyasetmedarê kurd Mehmet Tanriverdî ye û li Almanyayê li bajarê Giessenê hatiye dinyayê. Esas armanca Mîro ne maraton bû, lê çend birîndariyan ew bi paşve avêt: "Min di 7 saliya xwe de ligel klûba MTV 1846 Giessen dest bi basketbolê kir û heta 20 saliya xwe li vir min dom kir. Ji ber seqetiya di coga xwe de mixabin ez mecbûr mam ku dest ji basketbolê berdim."

Beriya ku seqetî dawiyê li xeyalên wî yên basketbolê bînin, Mîro xortekî serkeftî bû û di 18 saliya xwe de tevî tîma ciwanan ya MTV 1846 Giessen ew beşdarî pêşbirka başûr-rojavayê Almanyayê bû. Wan herwiha di lîgên eyalet û herêmê de jî leyist. Lê ew dem û xeyal derbas bûn, Mîro niha awira xwe tenê daye maratonê.

Di 2010ê de ew yekem car tevlî maratonekê bû û li Frankfurtê di 3 seet û 12 deqîqeyan de bi dawî anî. 2011ê jî li New Yorkê tevlî maratonê bû. Mîroyê ku niha li benda cihekî ji bo xwedina bijîşkiyê ye, xwe amadeyî sêyemîn maratona xwe dike, ku wê li Berlînê be.



# Piştî kar bedilê xwe diguherîne

Di jiyana kar de Evrîm Kut tenê bi bedil û qirawatê tê dîtin. Û ew ciwanekî gellekî serkeftiye jî. Bi 27 salên xwe ew rêvebirê şaxekî bankeya Sparkasse ye. Lê piştî kar, Evrîm bedilê xwe yê bazirganiyê bi bedilê futbolê diguherê.

Evrîm Kut di sala 1986ê de li Nisêbînê ji dayik bûye û di 4 saliya xwe de hatiye Almanyayê. Evrîm kurê siyasetmedarê kurd yê ser bi Partiya Çep (Die Linke) Yasîn Kut e. Ji 9 saliya xwe ve Evrîm futbolê dileyize û di ciwaniya xwe de bala gellek tîman kişand ser xwe, heta li hemberî tîmên ciwanan yên lîgên yekemîn yên Almanyayê jî leyist. Di wan salan de hema hema xewna wî jî dibe rastî û berpirsên Diyarbakirsporê dixwazin ku Evrîm transferî Amedê bibe. Diyarbakirspor wê demê di Super Lîga Tirkiyeyê de bû. Ew heftiyekê bi leystikvanên Diyarbakirspor re derdikeve antremanan û ji aliyê menîjerê klûbê ve gellekî tê ecibandin jî. Lê ji ber sedemên aborî yên Diyarbakirsporê ev transfer pêk nehat. Ew pirsgirêkên aborî yên Diyarbakirsporê her berdewam kirin û dawiya dawî Diyarbakirspor ji ser nexşeya futbolê winda bû û niha di lîgên jêr yên amator de dileyize.

Evrîm di wê baweriyê de ye ku gellek xortên Kurdan ji ber tinebûna piştgiran di kariyêra xwe de rastî astengiyan tên û pêş nakevin: "Eger em jî bi xwedî bûna, me hin xortên kurd dikaribû di astên bilind de di futbolê de cih bigirin. Bo mînak ji Bochûmê Ferat, ji Borussia Dortmund Hakan û Kaan, me bi hevdu re dest bi futbolê kir." Evrîm niha êdî bêtir mijûlî pîşeyê xwe ye û di aliyê futbolê de jî awira xwe li tîmên dûr nagerînê, ew niha di tîma li nêzîkî mala xwe Hasper SV ya bajarê Hagenê de dileyize.




**Evrim Kut (çep) ligel rêvebirê giştî yê Sparkasse Kai Hagen**

# *Çiyayê Kurmênc* ji hunermendan vala dibe


Ji aliyê rastê: Ednan ligel du mêvanên Gelawêjê

**Zinar Ala**

Di Nîsana borî de wênekêşê Efrînî Ednan Horo (1970) yê ji gundê Bêlêlko ligel çend kesên din ji herêma Kurdaxê salonek li bajarokê Lîskan li nêzîkî Efrînê kirê kirin. Armanca wan projeyeke çandî bi navê Qehwexane û Galeriya Gelawêj bû, ji bo ku bibe navendek ji bo çand û hunera herêma Kurdaxê (Çiyayê Kurmênc). Tevî zehmetiyên jiyanê li Kurdaxê, ji ber ambargoya li ser herêmê, di van çend mehan de qehwexaneyê Gelawêj karîbû gellek çalakiyên hunerî lidarbixe û cemawerekî mezin bikişîne nav van çalakiyan.

Birêvebirê Gelawêjê Ednan ji Rûdawê re behsa dijwariyên xebata qehwexaneyê kir û tekez kir ku ti têkiliya wan bi siyasetê re tine ye, ew tenê dixwazin xizmeta çand û hunerê li Efrînê bikin: "Me rêyeke serbixwe hilbijartiye, ew tenê dikeve warê xizmeta hunerê. Hinek ji xebata me razî ne û hinek din jî ne razî ne lê ev yek ne xema me ye. Pirsgirêkên me tenê aborî ne, xebata aborî ya qehwexaneyê, ango firotina çayê, qehweye, matê (vexwarineke arjantînî), vexwarinên hênik û nargîle têrê nake ku em lêçûnên lidarxistina çalakiyên hunerî misoger bikin, bo mînak wek lêçûnên ekîba deng, kamera û vîdyo."

**"Piştgiriya devkî têr nake"**

Ednan balê dikişîne ser koça gel ji herêmê û dibêje: "Destpêka vekirina qehwexaneyê nêzîkî 600 kesî serdana me dikirin, niha nîvê vê hejmarî berê xwe dan Tirkiyeyê û derên din. Gellek kesan ji derveyî welêt bi rêya facebookê piştgiriya me dikin û hinek dibêjin ku ew dixwazin ji bo vê projeyê ji me re arîkariyê bişînin, lê heya niha me tiştek nedît. Di vê rewşa em tê de piştgiriya devkî têr nake ji bo ku em xebata xwe bidomînin. Em naxwazin ti arîkariyê jî ji ti aliyekî siyasî werbigirin, da ku em nekevin bin bandora ti îdeolojiyekê. Ji ber wê jî eger em gihiştin astekê ku em êdî tê de nikarin karê xwe bidomînin, emê wê demê rawestandina xebata xwe bi rêya facebookê ragihînin û lêborîna xwe ji xelkê Efrînê bixwazin".

Ednan dibêje ku wî û hevalên xwe Ebdo Lîlav û Dilşan Qereçol di roja vekirina qehwexaneyê de ji bo bîranîna helbestvan Hamid Bedirxan pêşangeheke wêneyan lidarxist û piştî wê jî wan çalakiyek li ser folklora herêma Kurdaxê lidarxist û dengbêjê herêmê Bavê Selah jî di wê çalakiyê de li ser stranên herêmê agahî dan û her wisa çend qeyd pêşkêşî mêvanên Gelawêjê kir: "Her wisa di warê şanoyê de çend xebat hatin pêşkêşkirin. Li aliyekî din de jî pêşangehên şêwekar Henîf Hemo û peykerçêker Şoreşvan Îbrahîm jî di qehwexaneyê de hatine lidarxistin û di vê dawiyê de jî hunermend Mustafa Osê bi kemana xwe şevbuhêrek pêşkêşî xelkê Efrînê kir û pêşangeha ku niha heye ya şêwekar Celal Dada ye".


Şoreşvan Îbrahîm ligel xebateke xwe

**"Hunermend vî welat ji kê re dihêlin?"**

Ednan xemgîniya xwe ji ber koçberbûna hunermendan ji Efrînê anî ziman: "Ji ber dijwariya jiyanê gellek hunermedan pişta xwe dane Efrînê û yê mane jî xwe ji bo koçberbûnê amade dikin. Mirov dikare bêje ku Efrîn ji hunermendan vala dibe. Mafê her kesekî heye ku herê li jiyaneke baştir bigere, lê vî welatî ji kê re dihêlin?"

Di dawiya axaftina xwe de Ednan mixabiniya xwe ji ber piştguhkirina wan ji aliyê televizyonên kurdî ve nîşan dide: "Mixabin heya niha çi televîzyon li Efrînê hene, Ronahî be an jî Rûdaw be, Kurdistan TV, yan jî Kurdsat be, heya niha ti kesî negot ka em binêrin qehwexaneya Gelawêj bi çi karî radibe. Nizanim çima, lê dibe jî ku karê me ne bi dilê wan be."

Digel dorpêça li ser herêma Kurdaxê û nebûna elektrîkê, Gelawêj karîbû di van çar mehên borî de hinekî ezmanê Efrînê ronî bike û zindîbûneke hunerî bide bajêr. Lê ji bo ku ev ronahî venemirê, pêdiviya wan bi hevkariya hunermendan û arîkariya aborî heye.

## Kurdên Xorasanê

# Pirtûka nû ya Mehmet Bayrak derket

**Firaz Baran**

Mehmet Bayrak pirtûkekê nû bi navê "Di dîroka Kurd û Elewiyan de Xorasan" derxist. Pirtûk li Anqerê di nav Weşanên OZ-GE de derket û 655 rûpel e. Bayrak li ser dîrok, etnolojî, muzîk û wêjeya Xorasanê sekiniye.

Li ser berge pirtûkê wêneyek ji Yelda Abbasî heye. Abbasî hunermendeke Kurdên Xorasanê ye. Di pirtûkê de 162 nexse, gravur, wêne û fotograf hene. Pirtûk bi zimanê tirkî hatiyê nivîsandin.

Xorasan ji bo Elewiyên Bakurê Kurdistanê cihekî taybet e. Dewleta tirk ev yek dizanî û hertim got "Elewî ji Xorasanê hatine, Xorasan welatê Tirkan e, Elewî jî Tirk in." Bayrak xwestiye bi gellek belgeyên di vê pirtûkê de weşandî vê teoriya dewleta tirk xira bike.

Herwiha behsa dîroka Kurdên Xorasanê û leyistikên dewleta tirk li ser wan kiriye. Mehmet Bayrak di nav Kurd û Elewiyan de nivîskarekî qebûlkirî û popûler e.



# 20 keçan formên pêşbirka Miss Kurdistanê tejî kirine





Miss Kurdistan 2012, Şênê Ezîz

**Evîn Selah** *Hewlêr*

Festîvala Hewlêrê ya bazirganiyê îsal ji bo cara duyem tê sazkirin û tê de duyem Miss Kurdistan jî tê hilbijartin. Heta niha zêdeyî 20 keçan forma pêşbikê tejî kirine, da ku rikaberiyê li ser taca Miss Kurdistan bikin.

Festîval roja 10.08.2013 dest bi karên xwe dike û mehekê dom dike. Çalakiyên wê festîvalê bi awayekî zindî ji aliyê kanaleke xwecihî ya HD tên veguhastin, ku wê taybet ji bo festîvalê bê vekirin û piştî xelasbûna wê tê girtin. Serokê komîteya festîvalê Sîrwan Tofîq ji Rûdawê re ragihand: "Festîvala îsal bi naverok û bendên xwe cihê ye. Par festîval ji 3 bendan pêk dihat, lê îsal 8 bendan li xwe digire, wek hilbijartina Miss Kurdistan, nîşandana cil û bergan, lîstikên zarokan, konsert, sêrka cihanî, hilbijartina baştirîn fotograf li Kurdistanê, dûre jî pêşbirka molan tê sazkirin."

## 2 milyon Dolar lê diçin

Şîrketa Babylon vêga wek rêkxer e û nebûye sponsera sereke, lê eger ti sponserê din nebe, ewê bibe sponser. Vê şîrketê hewl daye îsal festîval ji par cuda be û bi kêmanî bigihije asta festîvalên Dubey û Enqerê. Rêveberê cîbicîkar ê şîrketa Babylon, Neşwan Cemîl Zeyto, ji Rûdawê re got: "Ji bo sazkirina vê festîvalê me doza zêdeyî 2 milyon Dolaran kiriye, ji ber ku ji bo diyarî û xelatan me milyonek Dolar daniye. Em qezenc nakin, lê em dixwazin karekî baş pêşkêş bikin."

## 20 keçan form tejî kirine

Li gor zanyariyên Rûdawê, heta niha zêdeyî 20 keçan formên Miss Kurdistan tejî kirine. Ji bo Miss Kurdistana îsal otomobîleke model 2013 û çend diyariyên giranbuha hatine amadekirin. Herwiha endamên komîteyê ji hunermend, bijîşkekî xweşikkirinê, mamosteyekî zimanê kurdî û dîzaynerekî cil û bergan û Miss Kurdistana par têk tên." Miss Kurdistana 2012ê Şênê Ezîz ji Rûdawê re got: "Îsal tevî Miss Kurdistan nabim, lê yek ji endamên wê komîteyê me ku wê Miss Kurdistana îsal hilbijêre."

Dunya Mihemed Resûl (21) ji Hewlêrê ye û ji bo tejîkirina forma Miss Kurdistanê hatibû desteya geştûguzara Kurdistanê, wê got: "Hêj zarok bûm min dixwest bibim keseke diyar û naskirî, dûre gava min bihîst ku forma Miss Kurdistan tê dabeşkirin, min çû form tejî kir. Ez pirr ji xwe bawer im."

# Dilber û Saman didin ser rêka vînê



Saman Şewket û Dilber Cizîrî mijûlî amadekirina berhemeke nû ne ku bi hev re tomar dikin û bi şêweyê duet belav dibe.

Saman Şewket ragihand: " Karê klîpa vê berhema bi nave "Rêka Vînê" li Almanyayê tê kirin. Awaz û têksta wê ji aliyê Diyar Kurd ve hatiye amadekirin û karê muzîkê jî ji aliyê Herêm Selah li Almanyayê hatiye kirin."

Saman herwiha got: " Senaryoya klîpa vê berhemê ya min e û behsa evîn û cudabûna keç û xortekî dike. Ev berhem yek ji stranên albûma min ya nû ye ku hêj nehatiye belavkirin."

# Karwan folklora kurdî û orkestrayê tevlihev dike



Ev demeke dirêj e ku hunermend Karwan Caf mijûlî amadekirina parçeyekî muzîkê yê orkestrayê ye ku ligel hinek amûrên kurdî li ser kar kiriye.

Karwan derbarê karê xwe yên nû de ji Rûdawê re ragihand: "Bi mebesta tevlihevkirina muzîka orkestrayê û folklorê kurdî ev demeke dirêj e em mijûlî amadekariyê ne. Ramana vê parçeya muzîkê ji strana folklorî ya kurdî "Ay Le Dûrewe" hatiye wergirtin û me bi formê orkestrayê ji bo amûra neyê amade kiriye."

Karwan Caf herwiha got: "Karê mîks û masteringa vê berhemê ji aliyê hunermendê navdar Dr. Ebdulla Cemal Segrme ve hatiye bicihkirin."



## Siyasetmedar û endamê Kongreya Neteweyî ya Kurdî (KNK) Mihemed Emîn Pêncwênî:

# PKK dînamoya kongreya neteweyî ye

- Maqûltir e ku Barzanî serpereştiya kongreya neteweyî bike
- Ne pêwist bû Tirkiyê, Îran û Sûriyê ji girêdana kongreya neteweyî agahdar bikin
- Cemîl Bayik pirr cidî ye û proseya aştiyê ligel Tirkiyê têk nade

*Kesekî nêzîkî Ocalan e û beriya girtina Ocalan li Kenyayê bi çend rojan, li Îtalyayê bi hev re bûn û behsa siberoja PKKê kirin. Niha jî ku Ocalan nameyan ji zindanê ji bo PKKê dinivîse, silavên taybet jê re dişîne û carekê daxwaz ji serkirdayetiya PKKê kiribû ku şêwira wî bikin. Mihemed Emîn Pêncwênî di vê hevpeyvîna bi Rûdawê re behsa kongreya neteweyî, serkirdayetiya nû ya PKKê û proseya aştiyê li Tirkiyeyê dike.*

**Rûdaw: Niha meseleya kongreya neteweyî bi germî tê behskirin, vê carê bi rastî kongre tê kirin?**

**Pêncwênî:** Bila vêga behsa çawaniya derketina ramana kongreya neteweyî bikim. Sala 1980yî rêxistina rizgarîxwaz a Filistînê, ku hat neçarkirin deşta Bêkayê li Libnanê vala bike, yekem karê wan ew bû ku Civata Niştimanî ya Filistînî li Tûnisê dirust bikin. Vê pêngavê bandor li ser Ocalan kir û her wê demê ramanek li ba wî dirust bû ku kongreya neteweyî ya kurdî bê girêdan. Tew wê demê her kesekî serdana Ocalan dikir, behsa meseleya kongreya neteweyî pê re dikir. Dûre ew raman di navbera PDKê û PKKê de bi germî hat behskirin. Di sala 1983yê de, gava Îdrîs Barzanî li Şamê serdana Ocalan kir û dûre peymaneke 9 xalî di navbera wan de hat îmzekirin, yek ji xalên wê peymanê meseleya girêdana kongreya neteweyî bû. Lê wê demê nehat kirin.

**Ji ber çi ewqasî hat paşxistin?**

PKK û Ocalan li ser ramana sazkirina kongreya neteweyî berdewam bûn. Di sala 1988ê de li Ewropayê kongreya neteweyî lidarxistin. Wê demê PDK û hinek partiyên din jî beşdarî nekirin. Lê YNK, Zehmetkêş, Partiya Komûnîst û çend partiyên din ên Başûrê Kurdistanê beşdar bûn. Lê wê kongreyê nikarîbû nûnertiya hemû Kurdan bike û nemaze piştî şerê di navbera Herêma Kurdistanê û PKKê de partiyên Başûrê Kurdistanê, ewên ku di kongreyê de beşdar bûn, xwe jê vekişandin. Di sala 2002yê de dîsa hewldanek ji bo lidarxistina kongreya neteweyî hat kirin, lê vê carê jî neçû serî. Ji ber ku dihat gotin ev hewldaneke Tirkiyeyê ye, behsa wê yekê dihat kirin ku divê kongre bêyî PKKê bê kirin. Lê Mam Celal û kak Mesûd ev pêşniyar red kirin û gotin nabê kongreya neteweyî bêyî PKKê bê girêdan.

**Di 22.07.2013ê de bo cara yekê hêzên siyasî yên herçar parçeyên Kurdistanê li Pîrmamê ji bo girêdana kongreya neteweyî civiyan û tê gotin ku nameyeke Ocalan ji bo wê civînê hebû, haya we ji naveroka wê nameyê heye?**

Silavên birêz Ocalan hebûn ji bo Mesûd Barzanî û kak Nêçîrvan û Mam Celal û min û Newşîrwan Mistefa. Herwiha pîrozbahî li Mesûd Barzanî jî kir ku serokayetiya kongreya neteweyî dike û bi dîtina min jî maqûltir e ku Barzanî serperştiya wê kongreyê bike. Ji ber ku girêdana kongreya neteweyî guherîneke mezin e ku di hizrîna serkirdayetiya kurd de rû daye.

**Hêzan çawa li hev kirin ku ew kongre li Hewlêrê bê kirin?**

Bi rastî pêşî nêrîneke din hebû li ser cihê kongreyê û hizrek hebû ku ev kongre li bajarê Helebçeyê bê kirin, da ku ti aliyek nebêje ez xwediyê wê me. Lê dûre nehat kirin û biryar hat standin ku li Hewlêrê bê kirin. Ji ber ku lêvegera siyasî ya Herêma Kurdistanê li Hewlêrê ye û baştir jî bû ku li Hewlêrê bê kirin.

**Çima di vê demê de meseleya kongreya neteweyî derket holê. Kîjan alî zêdetir rijd bû ku divê niha ew kongre bê girêdan?**

Vê carê PKKê hewl da ku kongreya neteweyî bi cidî bê behskirin û tew dikarim bêjim PKKê mijara kongreya neteweyî germ kir û dînamoya vê kongreyê bû û aliyên siyasî yên Başûrê Kurdistanê jî ev yek baş dîtin û ji bo serxistina vê hewldanê hevkarî kirin. Ji ber ku berê şandeke PKKê ji çiyê hatibû û ligel hemû aliyên siyasî yên Herêma Kurdistanê li ser çawaniya girêdana wê kongreyê danûstandin kiribûn.

**Di dema xwe de Talebanî bi saxlemiyeke baş li meydanê bû, Ocalan jî wiha bû. Lê kongreya neteweyî nehat sazkirin. Niha jî nav wan hersê serkirdeyan tenê Barzanî maye. Bi dîtina we Barzanî dikare vê kongreyê bi serkeftin birêve bibe bêyî Ocalan û Talebanî?**

Qasî ku haya min jê heye, Mam Celal agahdarî meseleya girêdana kongreyê ye û li ser razî jî bû. Ocalan jî name şandiye û spasiya vê hewldanê kiriye û doz kiriye ku kak Mesûd kongreyê birêve bibe. Wek min got, pîrozbahiya wî jî kiriye ku serpereştiya wê kongreyê dike.

**Endamê polîtbîroya YNK Sedî Ehmed Pîre berê ji Rûdawê re ragihandibû ku ji bo lidarxistina kongreya neteweyî Tirkiye, Îran û Sûrî hatine agahdarkirin. Pêwîst bû ku ev dewlet bên agahdarkirin?**



Bi rastî ti pêwîstî nebû ku Tirkiye, Îran û Sûrî li ser lidarxistina kogreyeke neteweyî agahdar bibin. Hinek aliyan xwestin xatirgirtina pêwendiyên bi van dewletan re bikin. Lê gelo ew pirsa Kurdan dikin ku ew ji bo xwe tiştekî wiha bikin? Ev pirseke navxweyî ye û ti pêwîstî bi vê nebû ku ji xelkê bê pirsîn. Em tev dizanin ku îstixbaratên Îran, Sûrî, Tirkiye, Amerîka û dewletên din jî li Herêma Kurdistanê hene û dar û keviran li Kurdistanê bend dikin. Lewma bi nêrîna min pirskirin li van dewletan xwekêmkirine.

**Tirsek ji wê yekê heye ku kongreyê neteweyî bisernekeve û dewletên derdorê bicivin û li dijî Kurdan rawestin. Ev tirsa we jî heye?**

Niha nakokî di navbera dewletên dagîrkerên Kurdistanê de ewqasî kûr in ku zor e li dijî Kurdan bibin yek. Niha Tirkiye piştgiriya Suniyan dike. Îran jî ya Şiiyan dike. Di vê navçeyê de ev herdu mezheb bûne beramberî hev. Dîsa li ser pirsên aborî kêşeyên kûr hene. Bi nêrîna min di vê demê de ewqasî ji hev dûr in û zor e bibin yek.

**Dibe ku xelk bipirsin çawa hûn evqasî nêzîkî PKKê û Ocalan in û hûn ne endamê PKKê ne?**

Di destpêka salên notî de ez ji Herêma Kurdistanê çûme Sûriyê, ji ber ku xwestin min bikujin, ji ber ku nêzîkî PKKê bûm.

**Kê xwest we bikuje?**

Naxwazim navê ti aliyekî bêjim. Lê ez agahdar bûm ku navê min di lîsteyê de ye ji bo min bikujin. Ez jî neçar bûm û çûme Sûriyê. Li wir min birêz Ocalan dît. Êdî wiha berdewam bû. Hingê çend kesên din jî, bi sedema ku nêzîkî PKKê bûn, li Badînan hatin kuştin.

Ku çûme Sûriyê, pirraniya demê bi Ocalan re bûm. Me behsa gellek tiştan dikir. Tew carekê behsa kak Nêçîrvan Barzanî kir û got ku serdana min kir, min dît ku xortekî lihevhatî ye û hêvî dikirin ku di pêşerojê de roleke xwe ya baş bibîne. Wê demê jî şerê di navbera PKKê û Tirkiyeyê de germ bû. Tew carekê sala 1992yê Mam Cela û Milazim Umer û Kemal Burqay hatin cem û doz kirin ku şerê di navbera PKKê û Tirkiyeyê de raweste. Lê wê demê Ocalan digot siyaseta Tirkiyeyê ew e ku hebûna Kurdan dide mandelê. Em dixwazin bi çekan çareser bikin. Bi kurtî li ser vê xalê nakok bûn.

**Di vê demê de PKKê kongreya 9. lidarxist. Tê de serokatiya nû hilbijart û Cemîl Bayik şûna Murad Karayilan girt. Hûn vê guhertinê çawa dibînin?**

Murad Karayilan di kongereyê yekem ya PKKê de, ku di 2002-2003yê de pêk hat, weke serokê Konseya PKKê hat hilbijartin, di kongreya duyem de Ocalan bi nameyekê pîrozbahî li kongreyê kirin û doz kir ku xortan bidin pêş û got kî bi we baş e hilbijêrin. Lê bi min baş e Murad be. Wate bi awayekî pesendiya Karayilan kir û ew hilbijart. Di peyrewa PKKê de jî, ji bo serokatiya konseyê, divê dema serokatiyê ji du xulan bêhtir nebe. Lê li kongreya sêyem de jî Murad Karayilan hilbijartin û hingê Cemîl Bayik piştgiriya wî kir ku bimîne. Lewma li gor peyrewa PKK ji Karayilan re nabe ku xwe kandîd bike.

Di vê kongreyê de Cemîl Bayik bû serokê konseyê û li gorê bû jî, ji ber ku dema Murad Karayilan jî serok bû, biryarên sereke bêyî Cemîl Bayik dernedixistin.

**Gotinek heye ku piştî ku Cemîl Bayik bûye serokê konseyê, proseya aştiyê li Tirkiyeyê têk biçe. Ji ber ku Bayik wek kesekî tund binav dibe?**

Cemîl Bayik kesekî pirr cidî ye. Proseya aştiyê ligel Tirkiyeyê têk nabe. Lê belê dibe ku ji aliyê Tirkiyeyê ve têk biçe. Ji ber ku Tirkiye heta niha ew sozên ku dabûn Ocalan, derbarê proseya aştiyê de, cihbicih nekirine. Dixwazim bêjim ku bi hukmê nêzîkbûna min ji PKKê, gumana min wiha ye, ku eger îsal ew sozên dabûn Ocalan cihbicih nebin, dawiya proseya aştiyê li Tirkiyeyê tê.

**Niha behsa azadkirina Ocalan tê kirin. Di nêrîna we de wê azad bibe?**

Niha yasayek di parlementoya Tirkiyeyê de hatiye pêşniyarkirin, ji bo wanên ku nexweş in û ji zindanê bên azadkirin. Eger ev yasa derket, dibe ku Ocalan jî bigire nava xwe, lê ez vê zehmet dibînim.

*Hevpeyvîn:* ***Hêvîdar Ehmed***



# Serdana Salih Muslim bo Tirkiyeyê

Selahattin Çelik

Divê ji haya şopgerên bûyerê nereviyabe, ku beriya salekê, gava bajarên Kurdan bi razîbûna Şamê ketibûn destên PYDê, dewleta tirk bertek nîşan dabû, gef lê xwaribûn. Lê piştî civîna Konseya Ewleyiya Netewiyê (MGK), her tişt guherîbû, peyamên nerm cihê gotinên tûj girtibûn. Piştî daxuyaniyên xweseriyê yên PYDê jî, heman şano xwe dubare kir, lê bi yek cudahiyê; di navberê de saleke qerase borîbû.

## Cudahiya par û îsal

Par qedera PYDê ne diyar bû. Lê îsal; herçiqas bi rêbazên şikdar be jî, li Rojavayê bû hêza serdest û diyarker. Ji Adarê ve li Kurdistana Bakur agirbest û pêvajoyeke nû heye. Tevgera Kurd bi siyasî û girseyî zexmtir bûye. Li Tirkiyeyê bi teqîna Reyhanliyê aloziya polîtîkaya hikûmeta AKPê ya li ser Sûriyê eşkere bû. Bi xwepêşandanên Gezî/Stembolê, li Tirkiyeyê bertekên girseyî destpêkirin.

Diyar bû ku NATO naxwaze bibe partiya şerê Sûriyê. Li Sûriyê hebûna rêxistinên tundrew yên îslamî û hovîtiya wan li welatên NATOyê raya giştî bizdand. Li Misrê derbeya leşkerî xwedî hêza guhertinên herêmî ye, ji vêga ve li ser planên Tirkiyeyê, bi awayekî negatîf bandora xwe nîşan dide. Û ne tiştekî veşartî ye ku di mehên dawî de Şam li himberî dijberên xwe gavên serdestiyê diavêje. Wezîre Karûbarên Derve yê Tirkiyeyê Ahmet Davutoglu cara yekemîn peyam da ku ***"Îslamiyên tundrew zirarê didin şoreşa Sûriyê."***

Ev cara yekem e ku bi navê PYDê be jî, Kurd li Tirkiyeyê hewqas xwîngermiyê werdigirin. Hinek bi ramana ji ber ku PYD derbê li planên AKPê dide, hinek jî ji ber laîkperestiya PYDê, xwîngermiya xwe pêşkeş dikin. Ev tiştekî nû ye ku di çapemeniya Tirkiyeyê de gotarnivîs hewqas bi zêdeyî, bi fesihî û objektîf dinivîsin û dipirsin: "Çima em li himberî Kurdan piştgiriya El-Qaîdeyê dikin?"

**Şîret û sed caran hişyarî: Îran û herwiha Sûrî tenê di dûv vî tiştî de ne ku li ser statukoya fermî ya heyî Tirkiyeyê bikişînin lihevhatinê û ev talûkeyeke rojane ye.**

Herçiqas hêj nayê wateya piştgiriya siyasî jî, di hafa raya giştî ya navneteweyî de jî heman sempatî heye. Û divê em ji bîr nekin ku helwesta Tirkiyeyê li himberî Rojavayê Kurdistanê, rasterast bandorê li pêvajoya li Bakur jî dike.

## Dest û piyên Tirkiyeyê girêdayî ne

Dibe ku artêşa Tirkiyeyê bi leşkerî hin gavan biavêje, lê nikarê Rojavayê dagir bike. Sedemên leşkerî û siyasî yên herêmî û yên aborî û civakî yên navxweyî rê li ber Tirkiyeyê digirin. Ji ber vê yekê, Tirkiye serî li rêya guftûgoyê dide. Mirov ji kû ve binêre jî, serdana serokê PYDê ji bo Kurdan serkeftineke.

Jixwe ji zû ve pirsa Rojavayê Kurdistanê bûye pirseke Tirkiyeyê. Kurdên Bakur ji polîtîkaya dewletê dilşikestî ne. Tirkiye li ber çavên wan piştgiriyê dide tundrewên îslamî. Jixwe li her bajarên Bakur bi hezaran koçberên Rojavayî hene û herwiha diyarde ji bo Bakuriyan jî bûye bûyereke aborî û siyasî ya rojane. Rayedar û dezgehên Tirkiyeyê jî bivênevê di bin berpirsiyariya hilgirtina vî barî de ne. Rojavayî xetên înternet û telefonên Tirkiyeyê bikartînin. Tevî astengiyan jî, nexweşên xwe dibin Bakur, pêdiviyên xwe jê peyda dikin û bi wan re bazirganiyê berdewam dikin. Ango Tirkiye heya qirikê tê de ye. Ji vê yekê divê mirov têkiliyên Tirkiye û PYDê wêkê têkiliyên pêwîst û derengmayî bibîne.

Bêguman daxwazên Tirkiyeyê hene: "Dev ji xweseriyê berdin. Nîşanên nasnameya Kurdan bilind nekin. Têkiliyên xwe bi Şamê re qut bikin. Bi el Nusra re şer nekin. Bikevin eniya dijberan" û wê Tirkiye di dûv dek û dolab û xefikan de be jî.

Em bersiva Salih Muslim nizanin. Lê çi be jî, divê Tirkiye bizanibe ku di bin pirê de gellek av herikiye, tişta ku dibe sererastkirina niheqiyên dîrokê ye, Kurd êdî jiyana bêyî nasnamê qet qebûl nakin û yek ji afirînerê rewşa îro Tirkiye bi xwe ye, ji ber ku wê nehişt û hê jî nahêle ku Kurd û partiyên dijber li hev werin.

## Hin pirs û hişyarî

Muslim jî tê de, rayedarên PYDê, çima hûn li himberî partî û kesayetên kurd hewqas dijwar, lê li himberî Tirkiyeyê û yên din hewqas stûxwar in? Birêz Muslim, tu dibêjî ku ***"Tirkiyeyê sozên piştgiriya mirovahî dane"!*** Dibe, lê te çi soz dane? Tu hêj bi planên xweseriyê ve girêdayî yî, an jî te dev jê berdaye?

Çima hûn di daxuyaniyên xwe de ile qala Turkmenan dikin? Ez nizanim ka li Rojavayê Kurdistanê Turkmen hene an jî nîne. Lê ya ez bi misogerî dizanim ev e ku Ermenî û Asurî hene û hejmara wan ji Turkmenan gellekî zêdetir e û yên di serî de pêdiviya wan bi navkirinê hene jî ew in. De çima ev bêwateyî û durûtî?

Taybetmendiya serdemê demokrasî ye. Bi gotinên din, divê mirov bi rêxistinî û bi tevgerî pirrengî be. Lê ezmûna PKKê heye, bi hejmar kêmahî be jî, rêxistin û kesayetên din bi rewşeke bivênevê re rûbirû dihêle, başî erê, lê wan bi darê zorê dike hevparê xeletiyên xwe jî, an jî wan derdixe derveyî tekoşîna gel. Îro tişta PYD li Rojava dike ev e.

**Ev tiştekî nû ye ku di çapemeniya Tirkiyeyê de gotarnivîs hewqas bi zêdeyî, bi fesihî û objektîf dinivîsin û dipirsin: "Çima em li himberî Kurdan piştgiriya El-Qaîdeyê dikin?"**

Beriya ez van gotinan binivîsim, min telefonî hin hevalên rojavayî kir, ku ez ji zanyariyên wan piştrast im. Jixwe gotarnivîsên me jî di hejmara borî de ev rastî nivîsandibûn: Li Qamişloyê hêzên leşkerî û sîxurî yên Baasê hene. Peykera bav Esad hêj li cihê xwe ye. Balafirgeha leşkerî vekirî ye. Ne tiştekî veşartî ye ku çalakiyên PYDê yên dawî bi Şamê re di nav ahengiyê de dibin. Eger rastî wiha be, wê Muslim di navbera Enqerê û Şamê de çi bike? Diyar e ku divê ew reqsvanekî xwedî pirr huner be!

Em dizanin ku li pişt gavên dawî yên Şam û PYDê, Tehran jî heye. Divê rayedarên PYD/PKKê ji bîr nekin ku melayên Tehranê kujerên Qasimlû û bi sedan siyasetmedarên kurd in. Ez qala daleqandinên salên dawî jî nakim.

Mirov bi 'dostaniya' Îranê bi ser nakeve, tenê diherime. Şîret û sed caran hişyarî: Îran û herwiha Sûrî tenê di dûv vî tiştî de ne ku li ser statukoya fermî ya heyî Tirkiyeyê bikişînin lihevhatinê û ev talûkeyeke rojane ye.

Beriya serdana Muslim bi yek-du rojan, çapemeniya Tirkiyeyê nivîsand ku hikûmetê ji bo temirandina rakêşiya Rojava serî li Ocalan daye. Gelo Muslim bi Ocalan re dane axaftin? Ocalan jê re gotiye: ***"Sînorê xwe bizanibe. Gavên ji qama xwe zêde neavêje. Ez li vir pirsê ji binî ve çareser dikim!"*** Û şireta biratiyê, jixwe qam êdî nabe, lê hay ji tijetî û qelewiya xwe hebe, divê ji ya şexên giravê nebore. Nexwe piyê mirov xerab dişemitînin.

Çibe jî, ez li ser nave xwe dibêjim; heya ku PYD li himberî tundrewên îslamî be, ezê bi dil û can li pişt wan bim.

# Kongreya Neteweyî



Ahmet Dere

Di rojên borî de xebateke pîroz hate destpêkirin. Di bin baniyê hikûmeta herêmî ya Kurdistanê de civînên ji bo amadekariya Kongreya Neteweyî pêkhatin.

Bi salan e di nava Kurdan de hêviyên derbarê Kongreya Neteweyî de tên ziman, lê mixabin heya demekî berê di vî warî de ti pêşketin çênebûn. Pirr sedemên vê yekê hene. Lê belê wisa dixuyê ku bi giranî astengî ji holê rabûne. Hêviyên me mezin in.

Serokê Herêma Kurdistanê rêzdar Mesûd Barzanî berpirsyartiya vê xebata pîroz girtiye ser xwe. Çendî ji salan vir ve me hêvî dikir ku heman berpirsyartî pêkhatiba jî, hewldanên ku niha raber dibin zêdetir baweriyê didin me.

Yek ji sedemên ku Konferansa Neteweyî, an jî Kongreya Neteweyî, pêknehatiye, nakokiyên ku di navbera hêzên kurd de heyî bûn. Bi taybetî nakokiyên di navbera PDK-YNK û PKKê de sedemên sereke bûn. Wisa diyar e ku di navbera van hêzên mezin yên Kurdistanî de heman sedem nemane, an jî pirr kêm bûne. Beriya her tiştî ev hêviyên me mezin dike.

Kongreya Neteweyî bi beşdariya tenê hêzên mezin pêk nayê. Divê biçûk û mezin, hemû hêz, rêxistin, partiyên siyasî, komeleyên ku nûnertiya beşên civakî dikin tevlî heman karî bibin. Bêguman di vî warî de dîsa rola herî mezin dikeve ser hikûmeta herêmî ya Kurdistanê. Eger karê îqnakirina ji bo beşdariya di Kongreya Neteweyî de li benda hin rêxistinan bê hîştin, ez bawer im wê xelet be û ewê li ser vê xebata pîroz bandora neyênî çêbike.

Di lîsteya beşdarvanên civîna yekem de navê hemû rêxistin û komeleyên beşên civakî yên Kurdistanî tine bûn. Bi taybetî derbarê nûnertiya diyaspora kurd de kêmasiyekê dixûya. Divê ev xebata wiha pîroz bi nêzîkatiyên partîzanî çênebe. Pêwîst e heman xebat di dilê hemû Kurdan de pîroziya xwe biparêze. Lewre divê derbarê beşdariyê de bi awayekî pirr hesas kar bê meşandin, da ku ev kongre bibe ya neteweyî.

Pêkhatina Kongreya Neteweyî di qada navneteweyî de jî bandoreke girîng çêdike. Eger ji heman kongreyê saziyek bê avakirin, ez bawer im beşekî herî girîng yê berpirsyartiyên wê divê bibe meşandina dîplomasiyê. Wê demê ti hêz nikare bêje "bila Kurd di nava xwe de bibin yek, piştre em wan nas bikin".

Hêvî mezin in.

# Singê golik û şerê li Rojava



Helîm Yûsiv

Di çîrokên gelerî de behsa şerekî giran dibe, ku tê de bi dehan kes tên kuştin û gund hemû tevlihev dibe û di encamê de kevir li ser kevir namîne. Gava aqilmendên gund li hev civiyan û xwestin kuştinê rawestînin û meseleyê çareser bikin, destpêkê li sedemên qewimîna bûyerê geriyan. Piştî lêpirsîneke dûrdirêj derkete holê ku meseleyê ji rakirina singê golik destpêkiriye. Golik filitiye nav gund, derûdor tevlihev kirine û ketiye pirêza cîranekî xwediyê golik û herdu rabûne hev. Yekî yê din birîndar kir û malbat û eşîra yê birîndar hatin heyfa xwe ji xwediyê golik hilanîn. Yek ji vî alî, yek ji wî alî û şer bû şerê hemû gundiyan. Wî gundî jî gundên derûdora xwe kişandin nav şer û herwisa di encamê de hemû gihiştin jêdera meseleyê û gotin ku hemû sûcê wî kesî ye, ewê ku singe golik rakiriye.

Vî şerê ku ev çend roj in didome, bi beşdariya eşkere ya Cebhet el Nusra û yekîneyên Dewleta Iraq û Şamê, ku ser bi Al-Qaîda ve ne, destpêkir û bi piştgirî û beşdariya bi dehên yekîneyên ser bi Artêşa Azad ve berdewam dike. Piştî têkçûna wan ya li Serê Kaniyê, xwestin heyfê ji Kurdên Girê Spî (Tilebyed) yê ser bi Reqqayê ve hilînin. Bi vî awayî deverên şer berfireh bûn û li zêdeyî sîh deverî şerekî giran di navbera komên çekdar û Yekîneyên Parastina Gel YPGê de qewimî. Derbarê vî şerî de rikberiya siyasî ya ereb jî bi bêdengiyê piştgiriya van koman dike. Ji hêla "Hevpeymaniya Hêzên Guherandin û Şoreşê" ve daxuyaniyeke kurt û bêwate derket. Tê de êrişî rejîmê, planên wê û xizmetkarên wê kiribûn. Mirov nizane ku mebesta wan ji xizmetkarên rejîmê yên berpirsiyarê vî şerî aliyê Kurd e, yan jî komên çekdar in.

**Burhan Gelyûn di nivîseke xwe de hewldanên avakirina hikûmeteke demkî ji hêla PYDê ve mîna "mayîna di dilê şoreşa rûmet, azadî û demokrasiyê de" nirxand.**

Siyasetmedarê xwedêgiravî lîberal û demokrat Burhan Gelyûn di nivîseke xwe de hewldanên avakirina hikûmeteke demkî ji hêla PYDê ve mîna "mayîna di dilê şoreşa rûmet, azadî û demokrasiyê de" nirxand. Ji hêlekê ve partiyên Encûmena Niştimanî ya Kurdî (ENKS) bi bêkêrbûn û siyaseteke seqet tawanbar kiribû û ji hêla din ve jî PYD bi hevkariya bi rejîmê û egoyîzma netewe-perestî tawanbar kiribû. Balkêş e ku Gelyûn hetanî bi navê PYDê bi awayekî şaş nivîsandiye û ew wekî "patiya yekîtiya demokrata Kurdistanê" binavkiriye. Ev jî nîşanên wê yekê ne ku rikberiya sûrî bi hemû reng û baskên xwe ve ji bo pejirandina Kurdan û mafên wan yên rewa ne amade ye. Nexasim ku nîşanên wê yekê hene ku rasterast ev şer bi navê Artêşa Azad û çekdarên wê birêve diçe.

Gellek birêveberî û îmareyên îslamî li Reqqayê, li Idlibê û li Helebê hatin ragihandin, lê deng ne ji Gelyûn, ne jî ji ti hêzên siyasî yên rikberiya Sûriyê nehat. Lê gava Kurdan behsa birêveberiyeke demkî ji bo herêmên xwe kirin, komên çekdar yên Cebhet el Nusra û hetanî yên Artêşa Azad dest bi êrişkirina ser Kurdan kirin û rikberiya siyasî jî zengilê xeterê û tehlûkeya ku ji "rojhilatê Sûriyê" tê, lêda. Bi vî awayî mafên Kurdan yên derbarê xweserî û birêvebirina herêmên wan de bû singê golik, ku hem Tirkiye rakire ser piyan, hem rejîma Sûriyê û hem jî hêzên îslamî û netewe-perest yên rikberiya Sûriyê. Bi gotineke din, yê ku singê golik li Sûriyê rakiriye Kurd in. Vî şerî diyar kir ku çiqasî Sûriyê ji azadiyê û Kurd jî ji bidestxistina mafên xwe yên bingehîn dûr in.

# Paşdeçûna Îslamasiyasî li Kurdistanê



Wladimir van Wilgenburg

Şerê vê dawiyê yê PKKê û grûpên ser bi El-Qaîde li Sûriyê, piştî derbeya Misrê, derbeke din e ku li Kurdistanê li Îslama siyasî dikeve. Di sala 2012ê de Îslamiyên kurd dilxweş bûn, lê niha li jêr fişarê ne.

Di sala 2012ê de Mela Bextiyar, ku serkirdeyekî YNKê ye, Îslama siyasî bi tundî rexne kir, herwiha dilgiran jî bû bi wan serketinên li ser hev ên Îslamiyan li Misr, Mexrîb, Tûnis û dûre li Kuwêtê. Ew ji wê yekê dilgiran bû ku ev serketin dibin sedema geşbûna Îslamiyan li Kurdistanê: ***"Serketina her partiyeke îslamî li cihanê bi ser hêzên demokratîk min dilgiran dike."***

Ew aloziyên ku Îslamiyan li Zaxo û Hewlêrê li dijî cihên firotina meyê û hotêlan dirust kirin, herwiha ew rola sereke ku partiyên îslamî di xwepêşandanên meha Sibata sala 2011ê de leyîstin, rola giring a wan partiyan eşkere kir. Her çiqasî her kes dizane ku ***"bihareke îslamî"*** li Kurdistanê rû nade.

Niha ji ber derbeya Misrê rewş hat guhertin. Herwiha ew tirsa ku ji ber geşbûna radîkalîzma îslamî li Sûriyê dirust bûye, rewş guheriye. Roja 15ê vê mehê, di konferansekê de li Holendayê, Mela Bextiyar pesnê derbeya Misrê da û behsa wê yekê kir ku Îslamî bi ser neketin ku demokrasiya Misrê birêvebibin.

Rojekê piştî wan gotinan, pevçûn di navbera partiyên ser bi El-Qaîde û hêzên kurdî de li Sûriyê derket. Dihat zanîn ku cîhadiyên kurd li Sûriyê şer dikin, lê piştî wan pevçûnan kanalên ser bi PKKê dîmenê wan cîhadiyên kurd nîşan dan, ku xelkên Helebçe û Silêmaniyê ne û bi awayekî zindî jî dijayetiya PKKê bo cîhadê hat nîşandan, gava hat gotin ku ew ciwan bi çewtî hatine, da ku bi navê Îslamê şer bikin. Medyaya ser PKK ew grûpên çekdar wek çeteyên çekdar nîşan dan.

Bereya îslamî ya kurdî, ku yek e ji wan aliyên ku li Sûriyê li dijî PKKê şer dike, nekariye bi Kurdan bide bawerkirin ku şerê wan tenê li dijî ***"Xwedênenasên"*** PKKê ye û ne li dijî gelê kurd e. Herwiha daxuyaniyên grûpên ser bi Al-Qaîde, ku dibêjin ew tenê li dijî sêkûlaran û PKKê şer dikin, nekarîne wiha bikin ku hemû Kurd nebin dijberê wan. Tew ew Kurdên ku pirr îmandar û muhafezekar in jî, wiha dibînin ku ew şerê niha heye, şerê Ereb û Kurdan e û şerekî navxweyî ye.

**Bereya îslamî ya kurdî, ku yek e ji wan aliyên ku li Sûriyê li dijî PKKê şer dike, nekariye bi Kurdan bide bawerkirin ku şerê wan tenê li dijî "Xwedênenasên" PKKê ye û ne li dijî gelê kurd e.**

Pêgeha Qendîl Post a girêdayî PKKê di Facebookê de gef li Komela Îslamê xwar û ew bi piştgiriya cîhadiyan tometbar kir, her çiqasî Komel vê yekê red dike. Herwiha Hizbullaha kurdî jî ji aliyê Kurdên Tirkiyeyê ve wek ***"xayîn"*** hat binavkirin.

Egera wê zêde ye ku ew pevçûnên Sûriyê û bûyerên Misrê ji aliyê hêzên ***"sêkûlar"*** ên kurdî ve ji bo lawazkirina wêneya Îslamiyên kurd bên bikaranîn û bên tometbarkirin ku ew ne dilsozên neteweya kurd in. Baştirîn rê jî bo partiyên îslamî yên kurdî, da ku vê yekê rawestînin, ew e ku di medyayê de piştgiriya şerê PKKê bikin û bêjin şervanên îslamî dûrî dînê Îslamê ne. Herwiha bînin bîra xelkê jî ku wan jî ji bo azadkirina Ocalan îmze dan.

Dixuye ew bûyer wê wiha bikin ku Îslamî kêmtir li deverê bi ser kevin. Nemaze ku hikûmeta Erdogan jî hest dike ku piştî derbeya li Misrê ew jî di jêr gefê de ye. Lê ev nayê wateya ku Îslama siyasî li Rojhilata Navîn têk diçe.

# Proje ji ber kêşeyên zêviyan nayên cîbicîkirin



Hotêla Rotana li Hewlêrê

**Armando Kurtuba**
*Hewlêr*

Hikûmeta Başûrê Kurdistanê ji sala 2006ê ve derfêtên berfireh dide şirketên biyanî ji bo ku bikaribin projeyên xwe li herêmê saz bikin. Li gor zanyariyên şaxê Hewlêrê ya Desteya Hilberînê ya Herêma Kurdistanê, di 6 salên borî de bi giştî 552 proje hatine erêkirin. Lê ji wê demê ve hejmareke gellekî hindik ya wan projeyan hatine cîbicîkirin. Sedemên vê yekê jî kêşeyên ji ber zeviyan rûdidin in.

Hikûmeta Başûrê Kurdistanê bi armanca teşwîqkirina razemeniya şirketên biyanî li Kurdistanê, di sala 2006ê de biryar da ku rê veke. Bi vê armancê wê deh salan bac ji şirketan wernegire û heqekî sembolîk ji bo zeviyan ji wan werbigire.

Ji heman salê ve bi giştî 552 proje ji hêla Desteya Hilberînê ve ji bo seranserî herêma Başûrê Kurdistanê hatine erêkirin. Bi giştî ji van projeyan 258 ji bo Hewlêrê, 140 ji bo Duhokê û ji bo Silêmaniyê jî 154 hatine erêkirin.

Di çarçoveya vê yasayê de pêwîst e Desteya Hilberînê peşiya ku projeyan erê bike, ligel wezaret û bajarvaniyên Herêma Kurdistanê hemahengiyê bike. Bi taybetî razîbûna wan jî ji bo dayîna zeviyan bistîne.

Rêveberê Nirxandin û Rêpêdanê yê Desteya Hilberînê, Kameran Muftî, derbarê hinek projeyên ku heta niha dirûst nebûne de diyar kir ku hinek kêşe derdikevin holê. Muftî destnîşan kir ku çend proje ji aliyê bajarvaniyan ve pêrgî pirsgirêkan hatine. Kêşeyên heta niha rûdidin bi taybetî ji ber destnîşankirina cihê zeviyan ên ji bo projeyan tên xwestin in.

# Kurdistan sêyemîn welatê dewlemendê petrolê ye

**Fadil Ozçelik**

Başûrê Kurdistanê ji ber rezerveyên petrolê roj bi roj bêtir bala welatên cihanê dikişîne ser xwe. Ev yek di warê têkiliyên siyasî û aborî de hem bandorê li welatên li herêmê dike û hem jî welatên sereke yên cihanê. Li gor daneyên cuda, eger rezervên petrola her welatekî bi ser hejmara niştecihên wî welatî de werin parvekirin, herêma Başûrê Kurdistanê di warê çavkaniyên rezerveyên petrolê de li seranserê cihanê di rêze sêyemîn de ye. Herwiha di warê gaza xwezayî de jî Kurdistan di nava hemû welatên cihanê de di rêza pêncemîn de tê.

### Rezervên petrolê yên cîhanê

Li gor daneyên sala 2011ê, ji petrola ku li seranserî cihanê tê deranîn ji sedî 48ê wê li Rojhilata Navîn e. Herwiha di nava hemû welatan de Venezuela di warê rezervên petrolê de serkêşiyê dike. Erebistana Siûdî, Kanada, Îran, Iraq û Kuwêt bi rêzê wê dişopînin.

Ji hêla din ve li gor daneyeke ajansa Bloombergê, li Başûrê Kurdistanê rezervên petrolê 45 milyar warîl in. Herwiha tê plankirin ku di sala 2015ê de rojane 1 milyon warîl û di sala 2019ê de jî rojane 2 milyon warîl li Başûrê Kurdistanê bên deranîn.

### Kurdistan beyî Kerkûk çaremîn e

Dema rezerveyên petrolê li gor hejmara şêniyên dewletan were hesabkirin, herêma Başûrê Kurdistanê dikeve rêzên pêş yên welatên cihanê. Li Kuwêtê serê kesî 40 hezar warîl dikevin. Bi 14 hezar warîl DYA duyemîn e û bi 11 hezar warîl Venezuela sêyemîn e. Herêma Başûrê Kurdistanê bi 9 hezar warîl li pêşiya Erebistana Siûdî di rêza çaremîn de ye.

Di nava vî hesabî de rezervên li bajar û derdora Kerkûkê nîne, ji ber ew herêm di fermiyetê de hêj ne ser bi Herêma Kurdistanê ne. Eger rezervên petrola li Kerkûkê li Herêma Kurdistanê were zêdekirin, Kurdistan dikeve pêşiya Venezuelayê jî.

### Rezervên gaza xwezayî

Li gor nûçeyeke enerjienstitusu.com ya 26.01.2011ê, li Başûrê Kurdistanê li herêma Mîran 6.8 trilyon m3 gaza xwezayî hatiye dîtin. Tê texmînkirin ku li wir temamiya gazê zêdetirî 9.1 trîlyon m3 be. Di vê çarçoveyê de eger ev hejmar bi serê xwe jî wekî bingeh were wergirtin, Başûrê Kurdistanê, beyî Kerkûkê, li gor hejmara niştecihan, piştî Qetar û Tirkmenistanê, dikeve rêza pêncemîn ya cihanê.

# Zîqandina dinanan ji stresê ye



Di xew de haya mirov jê çênabe eger dinan bikene zîqezîqa, ango petû xwe dijdînin û masûlke xwe ji hev vedikişînin. Ev rûdan ji ber stresa ku mirov di nava rojê de jiyaye rû dide û bi vê yekê laş hewl dide ku wê stresê ji mejî derîne.

Yên dinanên xwe di xew de dizîqînin, pê re dinanên xwe jî mevred dikin. Bi vê yekê ziyan digihije petûya mirov jî. Ev yek gellek caran dibe sedem ku di nava rojê de petû, serî û stûyê mirovan biêşe. Rayê mirov jî pê re dişidihin. Sedema sereke ya zîqandina dinanan strese di jiyana taybet û jiyana kar de rûdide ye. Dinanên xwehr jî dibin sedem ku di petûyên mirovan de nexweşî çebibin lê ev rûdan zêde kêm e.

### Zîqandina dinanên zarokan bêziyan e

Ziyana zîqandina dinanan li mezinan dibe lê li zarokan nabe. Zarok hêj di temenekî biçûk de dinanên xwe dizîqînin, heta ku petûya wan a xwarê û ya jorê ji bo cûtina xwarinê dikevin bayê hev. Ji ber vê yekê dinanên kursiyan yên zarokan xwe gellekî mevred dikin. Lê belê xema vê yekê nîne, ji ber ku dinanên zarokan yên şîr jixwe dikevin û dûre yên nû çêdibin.

Ji bo ku di xewê de zîqandin ziyanê negihîne dinanan, qalibên dinanan hene. Ev qalik pêşiya xwemevredkirina dinanan digirin. Lê belê ev qalik nikare pêşiya livandina dinanan, êşa serî û stûyê mirovan bigire. Ev yek tenê dikare bi çareserkirina wan pirsgirêkên derûnî yên ku dibin sedema zîqandina dinan pêk werê.

# Hay ji xwarina fitara xwe hebin

Mirovên rojî digirin derdora 14 seetan birçî dimînin. Ji ber ku laşê mirov fêrî birçîbûneke evqas dirêj nebûye, gellek kes di dema fitarê de bi awayekî bêkontrol xwarinê dixwin. Herwiha gellek rojîgir ji tirsa ku wê di nava rojê de birçî bimînin, di dema paşîvê de gellek xwarinê dixwin. Ev bêkontrolî di nava rojê de dibe sedem ku rojîgir bi pirsgirêkên cûre re rûbirû bimînin.

Pispor diyar dikin baştir e ku li şûna yek carê gellek xwarin, di navbera fitar û paşîvê de 3-4 caran xwarin bê xwarin. Sedema vê yekê jî ew e ku laş derdora 14 seetan bêxwarin û bêav dimîne. Dema yekcar gellek xwarin were xwarin, pergala serifandinê ya mirov bi pirsgirêkên mîna çêbûna xazê, dilxelandin û qebizbûnê re rûbirû dimîne. Ji bo ev pirsgirêkên tenduristî rû nedin, divê mirov fitara xwe bi cûreyekî şorbeyê veke. Ya herî baş jî ew e ku piştî vexwarina şorbeyê mirov derdora nîv seetê raweste, heta ew hêdî hêdî li ser laş belav bibe. Piştî wê demê mirov êdî dikare xwarina xwe ya fitarê bixwe.



Gellek mirov di wê baweriyê de ne ku mirov di dema rojiyê de kîloyan winda dike. Lê di rastiyê de eger mirov hay ji xwe nebe, mirov dikare qelewtir bibe. Eger xwarinên kêmdohn werin xwarin, wê laşê mirov bêhtir bikaribe tehamûl bike û laş wê baştir bikaribe li ser xwe bimîne. Ji ber birçîbûna demdirêj ya dema rojiyê, pergala serifandina mirovan xwarinên ji hevîr, rûnê di nava xwarinê de û şîraniyê wek kîloyan li ser laşê mirovan zêde dike. Ji bilî vê yekê, li şûna ku goşt di nava rûn de were pijandin, li ser agir yan jî di tenûrê de were pijandin wê baştir be. Xaleke din ya girîng jî ew e ku divê mirov gellek şînayî û fêkî di dema navbera fitar û paşîvê de bixwe.

Herwiha ji bo laş gera û livandin jî gellekî girîng e. Eger piştî fitarê mirov li ser xwe bigere, bandor li pergala serifandinê dibe û ew jî bi wê yekê xwe stabîlîze dike. Bi vê yekê hem xwarin tê serifandin û hem jî pêşiya qelewiya ku mirov ne li bendê ye jî tê girtin.

## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Şahê maran, serokê maran – Yarmetî, alîkirin. **2-** Belê, temam – Li bakurê Kurdistanê gundek (berepaş) – Li bajarê Medînê çiyayê hecî tewaf dikin. **3-** Hîlekar, fêhlbaz, sextekar – Bi xwe de kir, gû kir – Kesên ji Amedê. **4-** Gotin, tefsilandin, anîna ser zimên – Zo, du, kolana erdê. **5-** Li jiyanê, ne mirî, sax (berepaş) – Bajarekî rojhilatê Kurdistanê. **6-** Di trafîkê de nîşana Tirkiyê. **7-** Heta heta, bê dawî, heta roja qiyametê. **8-** Mirina nebatî,ne mirî ne sax (berepaş) – Bandor, giranî. **9-** Mehel, bend, hêl (berepaş) – Şêranîyek ji sindik û şekir. **10-** Li Kurdistanê herêm û çiyayek (berepaş) – Rê, rêbaz, xêz (berepaş).

**Serejêr: 1-** Xwesteka zayendî, hêza seksê – Dewlemendê gund. **2-** Xwelî, nîjadê Kurdan – Bêbext, durû, xayîn (berepaş). **3-** Mala çûk û teyrikan – Kesên ji Botanê. **4-** Cûreyek qumaş, qumaşê bi pirçik û biriqandî (berepaş). **5-** Bênamûs, bê ar, bê şeref –Notayek muzîkê. **6-** Li Siûdî Erebistanê bajarek – Gazind, lome. **7-** Gundên piçûk, gundok (berepaş) – Gotinek ecêbmayînê (berepaş). **8-** Na, nabe – Bûyer, qewimandin. **9-** Ne xweşik, mekroh (berepaş) – Tuneye, nemaye. **10-** Lûle, tiştên ku av tê re dibore (berepaş) – Pîsîtîya dewaran. **11-** Notayek muzîkê. **12-** Dewletek dagîrkerê Kurdistanê. **13-** Armanc, daxwaz. **14-** Ezîyet, êş, jan (berepaş). **15-** Markayek seetên desta. **16-** Çûk û teyrikek zivistanê (berepaş).

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 2 | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | |
| 3 | | | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | |
| 4 | | ■ | | | | | | | | | | | ■ | | | |
| 5 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | ■ | | ■ | | ■ | | | | | | | |
| 7 | ■ | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 8 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 9 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 208

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Q | E | R | A | M | Û | Ş | K | ■ | A | L | Î | K | A | R | Î |
| 2 | E | R | Ê | N | Î | ■ | A | R | Î | Ş | E | ■ | E | N | ■ | S |
| 3 | F | A | K | S | K | I | R | I | N | ■ | K | E | F | T | A | R |
| 4 | E | ■ | A | E | ■ | R | I | B | A | B | ■ | Ş | Î | Î | ■ | I |
| 5 | S | A | R | B | Û | ■ | S | ■ | D | ■ | | | | | | |
| 6 | ■ | S | Î | ■ | D | O | T | M | A | M | | | | | | |
| 7 | N | A | ■ | Î | ■ | L | A | Î | M | E | | | | | | |
| 8 | ■ | L | E | Z | G | Î | N | ■ | A | R | | | | | | |
| 9 | P | E | L | O | R | ■ | Î | M | H | A | | | | | | |
| 10 | Î | T | Î | R | O | K | ■ | Î | ■ | Q | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Rojbîn diçe Kurdistanê



Rojbîn li Kurdistanê li bajarê Wanê hatiye dinê. Ew di sê saliya xwe de hatiye Almanyayê. Rojbîn niha çar salî ye. Ew niha diçe baxçeyê zarokan. Ew li malê bi kurdî dipeyive. Wekî din tirkî û almanî jî dizane. Ew pirr ji barbiya xwe û hespan hezdike. Rojbîn her sal ji bo betlaneyê bi malbata xwe re diçe Kurdistanê.

## Birengîne





# PILING



Piling li Asyayê dijîn. Rengê pirça wan li jorê zera vekirî ye û li jêr jî spî ye û li ser rengê zer û spî jî xetên reş hene. Mezinahiya bejna wan digihijê heya 3 metreyan û giraniya wan digihujê heya 500 kg. Li seranserê dinê pilingên herî bi navûdeng pilingên Sibiryayê û yên Hindistanê ne. Pilingên Sibiryayê ji yên Hindistanê bihêztir in.
Piling goşt dixwin. Nêçîra piling pirr caran meymûn, pezkovî, xezal û hwd. nin. Piling di nav daristanê de bi tena serê xwe digere. Pilinga mê 2-4 çêlîkan tîne û heya demekê wan fêrî jiyana daristanê dike. Piling dema ku çêdibe heya 10 rojan kor e.



Beqa li jorê dixwaze herê cem hevala xwe ya li jêrê. Tu dikarî arîkariya wê bikî?



